9

لێکۆڵەرێکی مێژووی ڕۆژنامەگەریی کوردی:

(ڕووداو) زۆر باش ڕەخنە دەگرێ



Hejmar / Nr. 117
13 Cotmeh / Oktober 2011

Rûdaw

ÇAPA EWROPA

Rojnameya Kurdên Diyaspora

Deutschland 1,50 Euro | Österreich 1,50 | Belgium 1,50 Euro | Danmark 15,00 DKK | France 1,50 Euro | Nederland 1,80 Euro | Norway 15 NOK | Schweiz 2,70 CHF | Sverige 21,00 SEK

**Ciwan Haco:** Ez naxwazim bûyerê çêkim, divê ew min çêke... » 8

## Kuştina Mişel Temo Kurd şok kirin



Kuştina siyasetmedarê kurd û berdevkê Şepêla Pêşeroja Kurd li Sûriyê Mişel Temo ji aliyê kesên nenas ve bû sedema nerazîbûnên tund, hem di nav Kurdên Rojavayê Kurdistanê de û hem jî li derveyî Sûriyê. Herwiha berpirsên gelek welatan jî kuştina siyasetmedarê kurd bi tundî şermezar kirin. Li bajarên Rojavayê Kurdistanê jî bi hezaran Kurd daketin kolanan û bi tundî rejîma Esad şermezar kirin û daxwaza ruxandina wê kirin. Li gelek welatên Ewropayê jî ciwanên kurd tevlî çalakiyên şermezarkirinê bûn û li çendîn bajaran balyozxane û nûnertiyên rejîma Esad dagîr kirin.

Tevlî ku heta niha nayê zanîn bê kê Mişel Temo kuştiye, lê rejîma Esad weke berpirsê kuştina wî tê dîtin, herçiqasî ku hikûmeta Sûriyê vê yekê red dike û heta Wezîrê Derve yê Sûriyê Welîd Mualim got ku "komek terorîstan şehîd Mişel Temo kuştine."

# Baştir e ku dewleta me tune be!




1. Kongreya Cîhanî ya Kurdî bi beşdariya bêtirî 100 zanyar, kesayetî û rojnamevan li bajarê Hollanda Rotterdamê pêk hat.

Leyla Zana di kongreyê de got: Gelekî baştir e ku mirov bêyî dewlet be, ji wê ku dewleta mirov hebe û zalim be.

10 »



Wêne: Rûdaw

Leyla Zana li Kongreya Cîhanî ya Kurdî

**Ji 12-16 Cotmehê 2011 Fuara Pirtûkan a Frankfurtê ye. Rûdaw jî beşdar dibe. Serdana standa Rûdawê bikin.** » 3









Great Britain



www.rudaw.eu
info@rudaw.eu

## Çapemeniya tirk dîsa Karayilan girt!

### Bulent Arinç: Nûçe derew e!




**Enqere (Rûdaw) -** Çapemeniya tirk derbarê Karayilan de careke din nûçeyeke asparagas weşan. Li gor nûçeyê Karayilan ji aliyê Îranê ve hatiye girtin û paşê dîsa hatiye berdan, lê Cîhgirê Serokwezîr Bulent Arinç ragehand hemû nûçe yên derbarê girtina Karayilan de şaş in. Roja 11ê Cotmehê di Rojnameya Yeni Şafakê de ku nêzîka AKPê ye, nivîskar Abdulkadir Selvi di quncikê xwe de gotarek derbarê girtina Serokê Rêvebiriya KCKê Murat Karayilan de nivîsand. Selvî îddia dike ku "Karayilan ji aliyê Îranê ve hatiye girtin û ew heta Ûrmiyeyê birine, lê paşê dîsa ew berdane." Abdulkadir Selvi di quncikê xwe de li ser maseyê senaryoya girtina Karayilan nivîsandiye û daxuyaniyên Cîhgirê Serokwezîrê Tirkiyeyê Bulent Arinç jî bi kar aniye ku gotara xwe piştxurt bike.
Lê di heman rojê de Cîhgirê Serokwezîrê Tirkiyeyê Bulent Arinç daxuyaniyeke nivîskî belav kir. Arinç di daxuyaniya xwe de navê Yeni Şafakê û nivîskarê wê Abdulkadir Selvi eşkere nake, lê dibêje, "Gotinên wek ku min gotiye qaşo `îddiayên derbarê girtina Karayilan de rast in, dibe ku bazarî hebe, wê di nêzîk de bêhna wê derkeve` hemû derew in û min tiştek wiha negotiye."
Wezîrê Parastinê yê Tirkiyeyê İsmet Yilmaz jî daxuyand, "Heta ku rayedarên sixûrî daxûyanî nedin divê mirov ji tiştên wiha bawer neke û ji wan şik bike."
Çapemeniya tirk di navbera 16ê Tîrmehê û 5ê Îlonê de gelek caran ragehandin ku Karayilan ji aliyê Îranê ve hatiye girtin û PJAK jî têk çûye.
Li aliyê din di heman rojê de Rojnameya Starê jî ku ew jî nêzîka AKPê ye, derbarê PKKê de nûçeyek belav kir ku li Colemêrgê di operasyoneke leşkerî de 500 gerîllayên PKKê hatine kuştin. Peyamnêrê Rojnameya Starê yê Enqerê Cevherî Guven bêyî ku here Colemêrgê, li Enqerê nûçeyek nivîsand û îddia kir ku di operasyonekê de kampeke PKKê serobin bûye û 500 gerîlla hatine kuştin. Ajansa Nûçeyan a Firatê ANF jî daxuyand ku li wir ne operasyonek heye û ne jî yek gerîlla jiyana xwe ji dest daye: "Nûçe li Enqerê li ser maseyê hatiye nivîsandin.

# Kurdên Rojavayê Kurdistanê li Amedê dicivin

**Bawer Çem** Amed

Partiyên kurd ên siyasî BDP, KADEP, HAK-PAR û OSP ji bo ku Kurdên Rojavayê Kurdistanê di vê xirecira li Sûriyê de bikaribin statûyeke siyasî bi dest bixin û helwesteke yekbûyî nîşan bidin, ji bo Kurdên Rojavayê Kurdistanê di 22ê Cotmehê de konferansekê li dar dixin.

Li gorî agahiyên ku rojnameya me Rûdawê bi dest xistin, 'Komîteya Piştgiriya bi Kurdên Sûriyê re" ku li Amedê hate damezrandin, wê di 22ê Cotmehê de ji bo Kurdên Rojavayê Kurdistanê konferansekê li dar bixin û hemû nûnerên partiyên Kurdên Rojavayê Kurdistanê vexwînin vê konferansê. Lutfî Baksî, ku yek ji endamên Komîteya Kurdên Sûriyê ye, derbarê konferansê de agahî dan û destnîşan kir ku ji bo konferansê ew ê bang li 10 nûnerên partiyên kurd ên li Sûriyê bikin û wê hewl bidin di vê konferansê de helwesteke yekbûyî derxin û lobiya Kurdên Rojavayê Kurdistanê li cîhanê bimeşînin. Baksî da zanîn ku di nava amadekarên konferansê de nûnerên BDP, HAK-PAR, KADEP, OSP (Partiya Azadî û Sosyalîzmê) û Lêgerîna Kurdên Demokrat (LKD), ku xwe fesih kirin, jî cih digrin.

Baksî derbarê armanca lidarxistina konferansê de wiha axivî: "Em dixwazin bi giştî rewşa Sûriyê û bi taybetî jî rewşa Kurdên li Sûriyê û pêşveçûnên li Rojhilata Navîn di vê konferansê de binirxînin. Herwiha em vê konferansê ji bo bicihanîna daxwazên rewa û neteweyî yên gelê kurd ê li Sûriyê çêdikin. Em ê jî piştgiriya xwe ji Kurdên li Sûriyê re nîşan bidin. Bi piştgiriya çapameniya tirk, îro dewleta tirk û hikûmeta AKPê daxwazên Kurdan paşguh dixe. Em ê hewl bidin ku daxwazên Kurdên Rojavayê Kurdistanê bigihînin raya giştî ya Tirkiyeyê û cîhanê."



**BDP, KADEP, HAK-PAR û OSP ji bo piştgirî bidin Rojavayê Kurdistanê konferansek li dar dixin**

### 'Ferq nexe navbera Kurdan û Ereban'

Lutfî Baksî ji hikûmeta AKPê jî xwest ku di nêzikahiya xwe ya li hemberî gelên li Sûriyê de ferqê nexe navbera Kurd û Ereban û daxwazên bi milyonan Kurdên Rojavayê Kurdistanê jî bîne ziman û xwedî li van daxwazan derkeve. Baksî derbirî ku ew dixwazin di vê çarçoveyê de mafên neteweyî yên gelê kurd li Rojavayê Kurdistanê bên naskirin û pirsgirêka Kurdên Rojavayê Kurdistanê jî bi rêyên aşîtiyane bê çareserkirin. Baksî dubare kir ku ew ê ji niha û şûnde jî piştgiriya Kurdên Rojavayê Kurdistanê bikin û heta ji destê wan tê, ew ê xwedî li doza wan a neteweyî derkevin.

Berpirsyarê Enstîtuya Duhokê Abdulazîz Muhsen:

# Em dixwazin di navbera Kurdistan û Bayernê de pira têkiliyan ava bikin

**» Semîner û hevdîtin di bernameya Muhsen de hene**

**Munchen (Rûdaw) -** Bi armanca çendîn serdan, semîner û hevdîtinan ligel saziyên alman û yên kurdî, Berpirsyarê Enstîtuya Duhokê Duhokê Abdulazîz Muhsîn hate Almanya. Muhsen ji Rûdawê re ragehand ew dixwazin di navbera eyaleta Bayernê û Herêma Kurdistanê de pirekê ava bikin û got, "Herwiha em dixwazin ji ezmûnên saziyên alman sûd werbigrin û rewşa Herêma Kurdistanê bo Kurdên me yên Ewropa bidin nasîn."
Berpirsyarê Enstîtuya Duhokê Abdulazîz Muhsen û hevjîna xwe ya mamoste ji bo serdan, lêkolîn, semîner û sazkirina pêwendiyan bo demeke du mehê hat Almanya û niha bernameya xwe ya pêwendiyan didomîne. Abdulazîz Muhsen derbarê hewldanên xwe li Almanya ji Rûdawê re ragehand, "Li gor bernameya me ya heyî li Hannover, Munchen, Nurnberg, Ausburg û Brukselê hevdîtin, semîner û civînên me hene."
Berpirsyarê Enstîtuya Duhokê di 4ê Cotmehê de hatiye Almanya û heta sêşema borî bi çendîn saziyên alman re yên wek xêrxwaziyê, yên ku derbarê damezirandina fîrme û saziyan de rêberî dikin û saziyên ciwanan re hevdîtin çêkirine. Abdulazîz Muhsen got ji bilî hevdîtinên bi saziyên alman re wan li bajarê Munchen, Nurnberg û Augsburgê derbarê rewşa herêma Kurdistanê de ji Kurd û Almanan re li komeleyên Kurdan sê semîner li dar xistine. Berpirsyarê Enstîtuya Duhokê got piştî hevdîtinên li Bayernê ew diçin Hannoverê û li wir jî hevjîna wî ya mamoste ligel saziyên perwerdê çendîn hevdîtinan li dar dixe û sûd ji sîstema dibistanên alman werdigrin. Abdulazîz Muhsen ragehand pistî hevdîtinên li Hannoverê jî ew diçin Belçîkayê û li wir serdana Enstîtûya Kurd a li Brûkselê dikin. Muhsen heta du mehan li Ewropa dimîne û got, "Ji alîyekî ve dixwazin sûd ji em ezmûnên Almanan werbigirin û ji aliyekî din ve rewşa ji wan re behsa herêma Kurdistanê bikin û di navbera vir û wir de pireya têkiliyan ava bikin."



Abdulazîz Muhsen ligel nûnerên saziyeke alman

Rûdaw

Rojnameyeke siyasî û heftane

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Sernûser**
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

**Redaksiyon**
Firat Kelehkî
kelehkî@yahoo.com

Mehmet Sebatli
sebatli@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Mihemed Tahir
mtahir2011@windowslive.com

**Dîzayner**
Hamdullah Yumlu

**Îdare û belavkirin**
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Ayhan Çiftçî

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

**Pêwendî**
Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net / www.rudaw.eu
info@rudaw.eu

**Belavkirin / Vertrieb:**
Axel Springer Vertriebsservice GmbH
Süderstraße 77
20097 Hamburg
www.as-vertriebsservice.de

Rûdaw ji bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.

Beşdariya BDPê di behiya diya Erdogan de rewşê aram dike?

# Peyamên sersaxiyê yên Ehmed Turk û Demîrtaş bi awayekî siyasî hatin xwendin

» Peyama BDPê bo diya Erdogan wek peyameke siyasî bû

» AKP û BDP ji bo amadekariya makezagonê hevdîtin çêkirin

**Hêmin Xoşnaw**

Parlamenter û çavdêrên siyasî li ser wê yekê lihev dikin ku peyamên sersaxiyê yên Ahmet Turk û Selahattîn Demîrtaş, bi helkefta koça dawî ya diya Recep Tayyîp Erdogan, peyamên mirovî ne, lê di naverokê de peyamên siyasî ne, dûr jî dibînin ev peyam BDP û AKPê ji hev nêzîk bikin.

Roja 7ê Cotmehê diya serokwezîrê Tirkiyeyê Recep Tayyip Erdogan, Tenzîle Erdogan li nexweşxaneyeke Stenbolê, koça dawî kir. Di wê dema ku nakokî û dûrbûna di navbera BDP û AKPê ya Erdogan de vêga di zîrveyê de, hevserokê BDPê Selahattîn Demîrtaş û hevserokê Koma Civaka Demokratîk KCDê Ahmet Turk peyamên sersaxiyê şandin ji Erdogan re, lê belê peyamên wan bi xwendineke siyasî hatin xwendin.

Parlamenterê BDPê Îbrahîm Bînîcî înkar dike ku ev peyamên sersaxiyê siyasî bin û dibêje: "Peyama sersaxiyê ya Kurdan peyameke mirovî ye, divê bi vî rengî jî bê xwendin. Lewma em dibêji serê serokwezîr xweş be, lê serê ciwanên kurd bi tankên serokwezîr tên pehinkirin û kesî negotiye bila serê we sax be."



**Salahattin Demirtaş ligel Wezîrê Derve yê Tirkiyeyê Ahmet Davutoglu**

Bi baweriya Bînîcî, hê jî zû ye behsa bandora peyamên sersaxiyê li ser pêwendiya herdu aliyan bê kirin û got, "Hê jî ne diyar e gelo ev peyam çi rengvedanekê li ser têkiliyên herdu aliyan dikin."

Lê bi dîtina siyasetvanê kurd ê serbixwe Selahattîn Kaya peyamên sersaxiyê yên van herdu serkirdeyên kurd naverokeke siyasî lixwe digire û dibêje: "Di vê dema dawî de BDP û AKPê li himber hev zimanekî pir tund bikar tînin, pir jî ji hev dûr ketine. Di baweriya min de herdu alî bi wê yekê ramiyane bi helkefta koça dawî ya diya Erdogan seqaya navbera wan hinekî nerm bikin. Herdu lîderên kurd tiştekî baş kirin."

Beşdariya zîrveyî û berfireh a partiyên opozisyona Herêma Kurdistanê di behiya koça dawî ya hevjîna Mela Mistefa Barzanî û diya serokê PDKê Mesûd Barzanî Hemayl Xan, atomsfêreke nerm di seqaya Herêma Kurdistanê ya alozbûyî de çêkir. Di havîna îsal de, çavdêrên Kurd dibêjin dibe ku beşdariya berpirsên Bakurê Kurdistanê di behiya Erdogan de aramiyê bixe nav pêwendiyên aloz yên niha navbera Kurd û hikûmeta Tirkiyeyê.

**Eger BDP çareseriyê dixwaze divê xwe nêzîkî AKPê bike**

Fehîm Işik ku siyasetvanekî kurd e dibêje peyameke siyasî xwe di nav hinavê peyamên sersaxiyê yên Demîrtaş û Ahmet Turk de veşartiye: "Di nav van peyamên mirovî de, em peyameke siyasî jî dibînin. Ew jî ji wê xwe dibîne ku mirov eger bixwaze dikare mirina ne rewa asteng bike, lewma ger Erdogan bixwaze dikare mirina ciwanan kêm bike. Lîderên kurd xwestine ligel peyama mirovî peyameke siyasî ya bi vî rengî jî bidin."

Her çiqasî alozî di navbera BDP û AKPê de piştî sala 2007ê xwezayeke pir tund lixwe girt, lê piştî hilbijartinên 12ê Hezîrana çûyî ev alozî gihişt zîrveya xwe. Di wê dema ku proseya danîna destûreke nû bo Tirkiyeyê li parlamento dike bikeve warê cîbicîkirinê, nêrîna çavdêran bêtir dikeve ser van herdu partiyan. Gelo ligel destpêkirina vê proseyê pêwendî û zimanê herdu partiyan çawa diguhere?

Li gor Kaya proseya nivîsîna destûr têkiliya herdu aliyan berbi dûrketin û tundtirbûnê dibe "çimkî AKP di aliyê mantikî de negihiştiye wê asta ku daxwazên BDPê qebûl bike. Daku bigihîje wê astê pêdiviya me bi demeke zêdetir heye. Ger hisabê daxwazên BDPê jî neyê kirin, wê neçar bibe helwesteke tund werbigire."

Fehîm Işik hêvîdar e peyama sersaxiyê bibe rawestgeha nermbûna zimanê siyasetê, lê li gor wî hê jî zû ye qala bandora wê peyamê bê kirin: "Zimanê Turk û Demîrtaş pir nerm e. Wekî din jî zimanê Erdogan pir tund bûye. Hêvîdar im Erdogan jî zimanê xwe nerm bike."

Parlamenterê kurd ê AKPê Galip Ensarîoglu her çiqasî peyama Turk û Demîrtaş bi helkefta behiya diya Erdogan erênî wesif dike, lê bi dîtina wî bandorê li ser sistbûna pêwendiyên herdu aliyan nake: "Beşdarbûna di behiyê de tiştekî din e. Eger BDP çareseriyê dixwaze divê xwe nêzîkî AKPê bike. Çimkî bi gengeşe û dirustkirina bereyên cuda dijî AKPê nagihîjin tiştekî. Tena partiya di xema çareseriya kêşeya kurd de be AKPê bi xwe ye."

### Hevdîtinên bo amadekariya makezagona nû

Nûnerên AKP û yên BDPê yên parlemenê bi mebesta amadekarina makezagoneke nû de roja 10ê Cotmehê hevdîtinek çêkirin. Sanda AKPê ya di bin serokatiya Cihgirê Serokê Giştî yê AKPê Omer Çelik ku ji Wezîrê Dadê Sadullah Ergin, Cîhgirê Serokwezîr Beşir Atalay, Serokê Komisyona Makezagonê Burhan Kuzu û parlementerê AKPê Ahmet İyimaya pêk dihat, çû Navenda BDPê ya Enqerê. Cihgirê Serokê Giştî yê BDPê Hamit Geylani û Parlamena Batmanê Ayla Akat Ata şanda AKPê pêwazî kirin. Şanda AKPê berê jî bi CHP û MHPê re ji bo amadekarina makezagona nû hevdîtin çêkiribû.



## Partiyên kurdî li ser Civata Niştimanî ya Sûriyê ne hevhelwest in

# Rêjeya nûnertiya Kurdan di civatê de ji sedî 15 ye

- Opozîsyona Sûriyê heta îro çendîn kongre û konferans saz kirin.
- Ji 7 nûnerên civatê tenê yek Kurd e.
- Civatê soz daye ku navê Kurdan di destûrê de bê qebûlkirin.

**Rûdaw -** Di rojên 2 û 3 vê mehê de li bajarê Stenbolê yekemîn civîna civata niştimanî ya Sûriyê hat sazkirin. Nûnerên kurd ên ku tevlî civînê bûn kêfxweş in bi biryarên wê û bi baweriya wan pêkhateyên Sûriyê roj bi roj nêzîktir dibin ji naskirina rastiya kêşeya kurd.

Piştî ku şepêla nerazîbûnan a kolana Sûriyê destpê kir, opozisyona Sûriyê daku bikare cihê xwe di paşeroja Sûriyê de misoger bike, heya weke îro çend civîn, kongre û konferans saz kirine. Lê heya civîna dawî ya civata niştimanî li Stenbolê, civînên berê bê encamên balkêş man, jiber her yek ji wan di bin bandora aliyekî siyasî yan pêkhateyeke Sûriyê de bû, vêga opozisyona Sûriyê tê ku di çarçoveya armanca rûxandina rêjîma Beşar Esed de kom bibe. Bi taybetî ku niha 10 hezar leşker ji artêşa Sûriyê cuda bûne û Artêşa Azad a Sûriyê pêk anîne û fermandariya wê di nav xaka Tirkiyeyê de ye û biryar daye ji niha pêde li artêşa Sûriyê jî bide.

Bi dîtina endamê polîtburoya Partiya Yekîtî ya Kurd li Sûriyê Ebdulbaqî Yûsiv piştî ku civata niştimanî di 15ê meha çûyî de hat ragehandin û wezareta derve ya Amerîka, Brîtanya, Fransa û Kanada ew nas kirin, ev xaleke fetilînok bû di berfirehbûna civatê de. Ebdulbaqî ku tevî civînên wê civatê li Stenbolê bû, got: "Piştî wê naskirinê, Îxwan Misilmîn, Danezana Şamê û Tevgera Goran li Sûriyê û çend kesayetiyên navdar ên serbixwe weke Burhan Xelyon tevî civatê bûn."

Yûsiv tekez dike ku armanca civata niştimanî ya Sûriyê rûxandina rêjîma Esad e: "Lewma jî desteya hevahengiyê ji civatê vekişiya, ji ber ku armanca wê ne rûxandina rêjîmê ye."

Ebdulbasit Hemo ku siyasetvanekî kurd e û li Almanyayê rûdine, yek bû ji beşdarên civîna Stenbolê, diyar dike bi giştî civîna civata niştimanî ya Sûriyê heya cihekî serkeftî bû di derkirina hinek biryaran de. Lê hemû beşdarên civînê ligel wê rayê nebûn ku civat bi wekehevî nûnertiya hemû hevwelatiyên Sûriyê dike.




Xaleke din ya cudahiya civîna civata niştimanî ya Sûriyê li Stenbolê ji kongreyên berê yên opozisyona Sûriyê derbarê meseleya kurd bû. Hemû kongreyên berê derbarê rol û pêgeha Kurdan li Sûriyê piştî rêjîma Esed ne zelal bûn, lê heya cihekî zêde civîna heftiya borî ya Stenbolê ew nezelalî derbas kir û soz da ku neteweya Kurd di destûra Sûriyê ya nû de, mikur bê.

Bi dîtina Ebdulbaqî Yûsiv, bizava siyasî ya kurd di wê civînê de armancên baş bidestve anîn: "Înisaytîfa bizava kurdî derbarê çespandina navê Kurdan di destûra Sûriyê de, bû yek ji sozên wê civatê."

Derbarê hejmar û rêjeya nûnertiya Kurdan, Yûsiv dibêje ji ber ku bi baweriya me rêjeya Kurdan li Sûriyê di navbera ji sedî 14-15an dibe, lewma pêşniyar kirine ku rêjeya Kurdan di vê civatê de di navbera ji sedî 14-15an de be, û got: "Komîteya cîbicîker a civatê ku bilindtirîn desthilata civatê ye ji tevahiya 7 endaman, yek ji wan Kurd e, ku ew jî doktor Ebdulbasit Seyda ye."

Endamê serkirdayetiya Partiya Yekîtî ya Demokrata Kurd li Sûriyê Mehmûd Mihemed bo Rûdawê ragehand: "Çend partiyên kurd di civîna regehandina civata niştimanî ya Sûriyê de beşdar bûn, lê bizava kurdî beşdar nebû. Armanca civîna Stenbolê ew e ji raya giştî ya cîhanê re bêjin rola Kurdan lawaz e û rêjîma bê ya Sûriyê di destê Îxwan Musilmînan de dibe."

Derbarê mikurhatina daxuyaniya dawî ya ragehandina civata niştimanî ya Sûriyê ku tê de hatiye Kurd pêkhateyeke serekî ya gelê Sûriyê ne û divê mafên wan di destûra nû ya Sûriyê de bên çespandin, navbirî got: "Berî her tiştî bizava Kurd daxwaz dike destûra Sûriyê mikur bê ku Kurd neteweya dûyemîn in li Sûriyê û divê mafên wan ên siyasî û neteweyî bên naskirin, em neteweyek in li ser xaka xwe dijîn û ji neteweya Ereb cuda ne." Bi raya wî "Kongireya herî baş bo Kurdan kongreya Parîsê bû, ku Yekîtiya Sekûlerên Sûriyê saz kirin û tê de dibêjin: mafê çarenûsê bo Kurdan li Sûriyê."

Lê bi raya nûnerê Partiya Demokrata Kurd li Sûriyê li Herêma Kurdistanê Mistefa Îbrahîm: "Heya vêga ew kongreya dawî ya Stenbolê ku civata niştimanî tê de hat ragehandin ji hemû kongreyên din baştir bû, her çiqasî bizava kurdî bi awayekî fermî û beşekî zêde yê opozisyona Sûriyê beşdarî tê de nekirin, tenê çend Kurdan weke kesayetî tê de beşdarî kirin, kesên ku beşdarî kirine bi awayekî fermî nûnertiya bizava siyasî ya kurdî nakin." Herwiha Îbrahîm got beşdariya Kurdan di wan kongireyan de ne tiştekî xerab e: "Lê divê cudahiyên opozisyona erebî bandorê li ser yekîtiya hêzên Kurdan neke. Baştirîn kongre ew kongreya niştimanî ya kurdî ye ku li Sûriyê tê kirin û divê hemû Kurd girêdayî biryarên wê bin."

**Konferansa Stenbolê baş bû lê hê jî nehatiyê wê astê ku bi dilê Kurdan be.**

Civata niştimanî ya Sûriyê, pêşî ji 140 kesan pêk hatibû, piştî ku çend pêkhateyên din hatine nav civatê hejmara endamên wê gihişte 235 kesan, emîndariya giştî ya civatê jî ku ji 24 kesan pêk tê, 4 ji wan Kurd in, biryar e Kurdek jî weke nûnerê hevahengiyan bibe endamê emîndariya giştî.

Daxuyaniya civîna dawî ya civata niştimanî ji aliyê bîrmendê Sûrî Burhan Xelyon hat xwendin û li hebûna neteweya Kurd û Aşûrî li Sûriyê mikur hat.

Ebdulbasit Hemo bi bîr xist ku civîna Stenbolê bi giştî derbarê meseleya kurd de gavên baş avêtine û got, "Lê belê hê jî negihiştiye wê asta ku bi dilê Kurdan be."

# Li Sûriyê du artêşên Kurdan hatin damezrandin

» Artêşa Neteweyî ya Kurdistanê di 15ê Îlonê de daxuyanî belav kir

» Nûnerên siyasî vê yekê di berjewendiya Kurdan de nabînin.

**Besam Mistefa**

Li rojavayê Kurdistanê, ji bo ku bikaribin xwe li hember desthilatdariya Beşar Esad biparêzin, Kurdan di bin navê ‘Şêrên Welatê Kurdan‘de hêzêke çekdarî saz kirin. Berî demekê jî hêzeke din bi navê Artêşa Neteweyî ya Kurdistanê li Rojavayê Kurdistanê hat damezrandin. Tevgera siyasî ya kurdî jî bi guman berê xwe dide van gruban û dibêje: “Ev kar ne di berjewendiya doza gelê kurd de ne li Rojavayê Kurdistanê.”

Lê gel ku hê kuştin li deverên Kurdî weke deverên din yên Sûriyê berbelav nebûye jî, lê li ser toreya internêtê çend hêzên çekdarî yên Kurdên Sûriyê hatin ragehandin. Bi navê "Şêrên Welatê Kurdan" li rojavayê Kurdistanê hêzeke leşkerî hate avakirin. Herwiha Artêşa Neteweyî ya Kurdistanê jî daxuyaniyek weşand û herdu hêz tê de didin xuyakirin ku mebesta wan şerkirina li dijî rêjîma Beşar Esad e û parastina Kurdên Sûriyê ye.

Lê serokê partiya Çep a Kurd li Sûriyê Mihemed Mûsa dibêje ku ragehandina van hêzan di vê qonaxê de ji derketina valahiyekê tên û tiştekî çaverêkirî ye: “Lê di baweriya min rahiştina çekan û damezrandina artêş û hêzan, ne di berjewendiya doza Kurd de ye. “



ANK (Artêşa Neteweyî ya Kurdistanê) roja 15ê Îlonê li Qamişlo hatiye damezirandin

Mihemedê Mûsa dibêje ev gava xizmeta doza Kurd li Sûriyê bi ti hawî nake: “Ji ber eger tu herî leşkerekî Sûrî bikujî, yan eger gulleyek bê berdan wê agir berdin cihê gulleyê û mal û gund û bajarok û bajarên me wêran bikin. Ji ber kuştina leşkerekî em naxwazin nakokiyeke leşkerî çêbibe di devera me de. Rejîm eger li hincetan digere. Em rabin hincetekê bixin destê wan û behaneyekê ji bo kuştina leşkerekî em devera xwe wêran bikin? Ji ber vê yekê em van kiryaran red dikin.”

Di 15ê Îlonê de Artêşa Neteweyî ya Kurdistanê (ANK)ê daxuyaniyek ser internêtê weşand û tê de dibêje ku “Em pêwîst dibînin vê artêşa xwe dirust bikin ji ber serhişkî û kuştin û terora rejîma Esed derheqê hevwelatiyên Sûriyê de dike, ev hevwelatiyên ku daxwaza azadiya xwe dikin, em weke erkê xwe dibînin gelê xwe biparêzin bi hêz û çekan.” Herwiha ev artêş dide xuyakirin ku ew bi amadebûna hejmareke serkirdeyên leşkerî yên xwedî ezmûn û gelek azadîxwazên şoreşgêr ji ciwanên kurd li Qamişlo roja 15ê Îlonê hatiye damezirandin û serkirdeyên tevahiya yekîneyan li hemû deverên herêmê hatine destnîşankirin.

Serokê Partiya Yekîtiya Demokratîk PYDê Mihemd Salih Muslim ji Rûdawê re daxuyand ku haya wî ji damezrandina van hêzan nîne, lê got: “Me tiştekî wiha nedîtiye. Em nizanim armancên wan çi ne, lê hertiştê ku şîdet û tundûtûjî tê de hebe û zor tê de hebe, em ne alîgirê wê ne, û em dixwazin bi riyên siyasî tevger bê kirin.”

Lê serokê PYDê eşkere kir ku sedemê derketina grub û hêzên bi vî rengî rejîma Esad bi xwe ye û got: “Bêguman em karên wiha selbî dibînin. Tenê divê siyaset bê meşandin. Lê berpirsiyara wê jî em rêjîma Sûriyê dibînin ku heya vêga dixwaze hêzê bikar bîne û şîdetê dimeşîne, lewma ne xerîb e kesên wiha jî derkevin meydanê.”

Endamê serkirdayetiya partiya Yekîtî ya Kurd li Sûriyê (Yekîtî) Mehmûd Mihemed bi tundî ragehandina van hêzan red kir û got ku: “Xebata me ji roja damezrandinê û heya îro aştiyane û demokratîk û sivîl bûye. Bi van gavên bêberpirsiyar em behaneyan dixin destê Esad de ku êrîşî navçeyên kurdî bike û wêrankariyê destpê bike. Daxwaz ji van xortan dikim bi berpirsiyarî tevbigerin û bizanin ku bi vî rengî armancên dijminên Kurdan pêk tînin, û qet xizmeta çareserkirina pirsgirêka kurd li Sûriyê nakin.”

**Daxwaz ji van xortan dikim ku bi berpirsiyarî tevbigerin.**



## Şirove



### Rewşa Sûriyê û berpirsyartiyên PYDê

**Ahmet Dere**

Bihara Erebî’ dewam dike. Çendî li Lîbyayê hêj dawî li temenê rejîma Qaddafî nehatibe jî, wisa diyar e ku wê serîhildana muxalefetê bigihije armanca xwe. Pêvajoya nû di hemû welatên ereban de dibe xwediyê bandoreke giran. Dibe ku rejîmên hin welatên ereb li ber pêla vê pêvajoyê nekevin, lê belê ne mimkun e ku ew zerarê nebînin.

Ez naxwazim bi awayekî giştî li ser vê pêvajoya Bihara Erebî bisekinim, bi vê nivîsê ez dixwazim derbarê rewşa Sûriyê û helwesta Kurdên vî parçeyê Kurdistanê de hin nêrînên xwe bînim ziman.

Beriya her tiştî helwesta Kurdên Rojava hêdî hêdî dikeve xeta rast. Ji destpêka pêvajoya Bihara Erebî û vir ve, rêxistinên vî parçeyê Kurdistanê nebûn xwedî nêzîkatiyekê rast. Digel têkoşîna cur be cur hêzên muxalîf, Kurdan dengê xwe bilind nekirin. Di nava rêxistinên kurdan de daxwazek hebû ku ew bi rejîma Beşar Esad re bikevin nava diyalogê û li ser esasê naskirina hin mafên Kurdan ew xwe tevlî têkoşîna dijî rejîmê nekin. Di warê siyasî û herweha dîrokî de ev nêzîkatî pir şaş bû û ne li gorî berjewendiyên gelê me bû.

Di helwesta nuqsan ya Kurdan de rola Partiya Yekîtiya Demokratîk (PYD) pir mezin bû. PYD kete nava kêmasiyeke ciddî ya siyasî. Bêguman di nêzîkatiya PYDê de rola KCKê û perspektîfên wê jî heye. Lê belê, weke hêzêke vî parçeyê Kurdistanê û xwedî bi hezaran şehîdan, PYDê dikaribû zûtir pêşeroj bidîta û li gorî pêdiviyên berjewendiyên gelê kurd bibûya xwedî xetekê têkoşînê.

Kuştina Mîşel Temo bû sedema vegera ji kêmasiyan. Ji 7ê Cotmehê vir ve bi sedan hezaran kes tevlî serhildanan dibin. Bihara Erebî hêdî hêdî dibe Bihara Kurdên Rojava jî. Eger ji vê serîhildanê re baş pêşengî were kirin, di nava mehekî de rejîma Beşar Esad meşrûyeta xwe winda dike û derî ji pêvajoyekê nû re vedibe. Bêguman di vê pêvajoya nû de wê Kurd bibin xwedî hêzekê xurt.

Digel kêmasiya ku hatî jiyîn, divê PYD hemû hêza xwe bikişîne axa Rojava û bi hêzên din yên Kurdan re bikeve nava hevkariyekê baş. Ji vê demê bi şûnde ez ti wateyê nadim mayîna hêzên PYDê yên li Qendîlê. Ez dikarim bêjim ku di dîroka Rojavayê Kurdistanê de ev cara yekem e ku fersend dikeve destê Kurdan, divê ev derfet neyên winda kirin.

Em dizanin ku di Rojavayê Kurdistanê de cur be cur hêz hene. Dibe ku hêzên ji PYDê mezintir û bihêztir jî hebin. Lê belê PYD xwediyê bi sedan, dibe ku bi hezaran, şehîdan e. Lewre divê ew ji hemû hêzên din zêdetir bikeve nava têkoşînê. Encex wê demê mirov dikare bêje bîranîna şehîdan nehatiye jibîr kirin.

Di dawiyê de ez dixwazim vê jî bêjim; ji her demê zêdetir vê gavê pêdiviya Kurdan bi yekîtiyê heye. Divê hemû hêzên Rojava nakokiyên xwe jibîr bikin û bihev re bikevin nava karê geşkirina têkoşînê. Ji hemû hêzan zêdetir jî divê PYD bibe xwediyê nêzîkatiyeke dilnifs û fedakar.

Li Almanyayê dîsa karsazekî kurd kuştin

# Gulfiroş jî bû qurbanê 'Kujerê Donervanan'?



Muhittin Levent li peş dikana xwe a gulan hat kuştin

**Munchen/Stuttgart (Rûdaw) -** Kurdekî gulfiroş, yê bi navê Muhittin Levent (44, Erzerom) saet 4ê sibê li bajarê Laichingen (giredayî Neu-Ulmê/eyaleta Baden-Württemberg) li kolana Hirschstrasse, ji aliye kesekî nediyar ve bi debançê hat kuştin.

Berdevkê Polîsê Baden-Würtembergê Wolfgang Jürgens got ew piştî bûyerê du- sê saet bi sedan polîsan li şopa kujer geriyane, "mixabin em rastî şopa kujêr nehatin. Li gor lêkolînên me yên heta niha em nizanin ka ew kujerê donervanan gulfiroş kuştiye yan na." Jürgens bang li runiştevanên Laichingenê kir û got "em ji bo girtina kujer û gilîkirin û agahîdayîna kesên biguman alîkarî ji her kesî dixwazin. Bila li ser vê telefonê agahî bidin me 0731/1880."

Di encama lêpirsîna li ser nêzikî 15 şahîdan de, 2 şahîdên ku cîranê gulfiroş in, dibêjin: "Dengê 4 teqînan hatin me, me got qey ew teqînên leyîstoka zarokan in. Me tiştên xerab texmîn nekir." Hinek şahîd jî dibêjin ku Muhîttîn Levent gelek caran ji aliyên kesên nenas ve gef lê hatine xwarin. Li gor Wolfgang Jürgens jî gotinên şahidan hevûdû nagirin. Lêpirsin di nava nas, xizm û cîranên Levent de didome.

Doxtorên dadê jî ragehandin ku wan di encama otopsiya laşê mirî de 15 perçeyên guleyan dîtine û ji bo lekolînê ew şandine daireya kirimînal ya eyaleta Baden Württembergê. Ji aliyê din ve bi armanca nasîn û girtina kujer, polîsê eyaleta Baden-Württembergê ji 40 kesî bi navê "Blume" (gul) komisyoneke taybet damezirand.

Karbidestê kurd Muhittin Leventê Erzeromî ji hevjîna xwe cuda dijiya û lawekî wî yê mezin heye û ligel dayîka xwe li Tirkiyeyê dijîn.

## Çawa hatiye kuştin?

Lo gor polîs bûyer wiha qewimiye: Sibeha seşêmê, 3ê Cotmehê Muhittin Levent bi alîkariya hevkarên xwe ji Hollanda gul, çîçek û şitilên nû anîbûn û li meydana parka firmeya xwe valadikirin. Muhittin di saet 4ê sibê de ji hevkarên xwe dûr dikeve û diçe kolana biçûk a Hirschstrasseyê. Di ve navberê de hevkarên wî karên xwe yên valakirinê berdevamdikin. Heta niha ti kes nizane ka çima Muhittin çûye wê caddeyê, lê tê texmîn kirin ku ew çûbe ber otomobîla xwe ya parkkirî. Herwiha tê texmînkirin ku kujerê wî jî li vir li benda wî bû.

## Ma gelo kê ew kuştin?

Ev nêzîka 10 salan e ku polîsê alman bi rêzekuştineke bitirs re mijûl e. Di nava 10 salên dawî de 9 bazirganên biyanî (Kurd, Tirk û yek jî Yûnan) ji aliyê heman kesî an kesan ve hatine kuştin. Lê heta niha ti kes nizane ev kes ji bo çi hatine kuştin; polîs û saziyên ewlekariya alman jî ligel van bûyeran neçar in. Ev bûyer di rayagiştî de wek "Döner-Killers" (Kujerê Donervanan), tê zanîn, ji ber ku di nava kuştiyan de çend donervan hene. Ji van kuştiyan, 8 kes ji Tirkiyeyê ne û yek kes jî Yûnan e.





### Kesên ku heta niha ji aliye "Döner-Killer" hatine kuştin:

**Gulfiroş**, *Enver S.*, (38), Schlüchtern/Hessen (Nürnberg) (9. 9. 2000), Tirk
**Terzî**, *Abdurrahim Ö.*, (49), Nürnberg-Steinbühl (13.8.2001), Tirk
**Fêkîfiroş**, *Süleyman T.*, (31), Hamburg-Bahrenfeld. (28.6.2001), Tirk
**Fêkîfiroş**, Habil K., (48), München-Ramersdorf. (29.8.2001) , Tirk
**Donervan**, *Yunus T.*, (25), Rostock, (25.2.2004), Palu/Kurd
**Donervan**, *Ismail Y.*, (56), Nürnberg, (9.6.2005), Suruç/Kurd
**Miftevan**, *Theodorus B.*, (41), München/Westend, (15.6.2005), Triantaphyllia/Yunan.
**Kioskvan**, *Mehmet K.*, (39), Dortmund/ Mallinckrodtstraße, (4.4.2006), Mereş/ Kurd
**Internet-Cafê**, *Halit Y.*, (21), Kassel, (6.4.2006), Kurd
**Gulfiroş**, *Muhittin L.* (44), Laichingen/ Hirschstraße, (3.10.2011), Erzerom/Kurd

## Gelo kujerê wan, kujerê Muhittin e jî?

Gelo Muhittin qurbaniyê 10`mîn e? Ev pirs niha serê polîsê alman mijûl dike. Berî 10 salan qurbaniyê yekem jî, ji bajarê Schlüchtern ya eyaleta Hessenê bû û ew jî gulfiroş bû.

Niha li daireya krîmînal ya eyaleta Baden-Württembergê lêkolîn li ser wê yekê tê kirin ku gelo demançeya Çek-Çeska, tîp 82, k.7,65 mm ku 9 kes pê hatine kuştin, di kuştina dawî de jî hatiye bi kar anîn yan na?

Li gor nûçeyek ku di rojnameya Südwest Presse de hatiye belavkirin xwediyê bere yê firmaya gulfiroş ya Muhittin Levent (zavayê Muhittin e) ji aliyê endamên Hizbulluhê ve di sala 1999ê de hatiye kuştin. Li gor rojnameya navborî laşê zavayê Muhittin ligel 9 laşên din di goreke komî de li Kurdistanê derketiyê holê.

Ji bo nasnameya kurdî










# YEK-KOMê 60 îmze kom kirin, lê hayê Kurdan jê nîne

» Nûnertiya PDK û YNKê: Ligel me pêwendî nehatiye kirin

» Goran: Me piştgirî da kampanyayê

Azad Dîcle

Federasyona Komeleyên Kurd li Almanya, YEK-KOM di navbera 1 û 15ê 13 îlonê de bi armanca pejirandina nasnameya kurdan ji aliyê Almanya ve, dest bi kampanyaya îmzeyan kir û di encam de 60 hezar îmze civand û teslîmê Parlamena Almanyayê li Berlînê kir. Serokê YEK-KOMê Yuksel Koç ji Rûdawê re regahend îmzeyen ku wan civandine ji aliyê komîsyonek taybet ve tê lêkolîn kirin û li gor prosedorê wê rayedarên alman di destpêka sibata 2012yê de bersivê bidin wan. Koç balkişand ser girîngiya kampanyayê û got, ew di çarçoveya vê kampanyayê de gihan gelek Kurdên ji her çar perçeyên Kurdistanê û got, "Kampanyaya me didome û em dixwazin bi vê mebestê têkiliyên di navbera hemû dezgehên kurdan xurt bikin."

Nûnertiya PDK û YNKê ragehandin ku ew ji bo kampanyayê nehatine agahdarkirin û KOMKARê jî berî ragehandibû ku ew tevlî kampanyayê nabin.

Serokê YEK-KOMê Yüksel Koç ragehand wan ligel îmzeyan di 14 xalan de daxwaziyên Kurdan rêz kirine û roja 15ê îlonê teslîmê parlamena Almanya kirine. Koç got pêvajoya lêkolîna li ser îmze û daxwaziyan dom dike û got, "Ji bo 60 hezar îmze û daxwaziyên me wê komîsyonek taybet lêkolîn bike û di vê navberê de xal bi xal daxwaziyên me pêşkêşî wezîran bike. Wezîr jî wê bersiva van daxwaziyan bidin û ev pêvajo wê heta dawiya çileya 2012ê yan jî destpêka sibatê bidome."

Koç herwiha got di civandina îmzeyan de YEK-KOMê ligel gelek dezgehên kurdan û penaberan têkilî çêkirina û got "30 dezgehên penaberan piştgirî dane me."

## Goran piştgirî da kampanyayê

Enwer Alman, Endamê Komîteya Goran li Almanya ragehand ku li Almanya nûnertiya wan tune lê komîteyek wan a ji 9 kesan pêk te heye û got hemû endaman jî îmze dana. Enwer Alman got ew wek Goran kampanyayên wiha yên ku xizmeta berjewendiyên netewî dikin girîng dibînin û got, "Çi tiştek wiha hebe em piştgirî bidinê. Haya me ji kampanyaya YEK-KOMê heye, tiştek gelek girîng e, wan serî li me dan û me jî îmzeyên xwe dane wan û tevlî kampanyayê bûn."

Li ser navê nûnertiya PDK li Almanya Kenar Xan ragehand ku ew bi rêya nûçeyek Rûdawê ji kampanyayek wiha agahdar bûne, lê pêwendî ligel wan nehatiye kirin. Kenar Xan herwiha got Kurdên ji başûrê Kurdistanê li Almanya belav dijîn û zehmet e ku di demeke kurt de hejmareke mezin îmze ji wan bê komkirin.

Nûnertiya YNKê li Berlînê ragehand ku haya wan ji vê kampanyayê tuneye û kesî wan agahdar nekiriye. Berdevkê nûnertiya YNKê herwiha ragehand ku eger pêwendî ligel wan hatiba kirin wê helwesta wan êrênîbûya, jiber ku ew pejirandina nasnameya kurdî li Almanyayê girîng dibînin.

# Vîdyoyên Azad 3 mîlyon car hatine temaşekirin

Youtube nameyek ji min re şand û nivîsandiye ku "Eger tu carekî din fîlmên Yilmaz Guney biweşînî, em ê kanala te bigrin."

Zinar Ala

Azad Kanjo Navero sala 1985ê li Barcelona ji dayîk bûye, dayîka wî Katalan e û bavê wî jî Kurdekî ji Rojavayê Kurdistan, ji Kobanî (gundê Susanê) ye. Azad hewl dide bi her awayî xizmeta gelê xwe bike. Xwendina xwe ya bilind di ‘reklam û têkiliyên gîştî’ li zanîngeha Barcelona qedandiya. Ew niha li dibistana sînemayê ya girêdayî Akademiya Sînemayê ya Katalonya derhêneriyê dixwîne.

Em çûn serdana mala Azad li bajarokê Calafell, ku dikeve ser berava Derya Spî. Azad heya pênc saliya xwe li Katalonyayê dijiya. Sala 1991ê de Azad û malbata xwe çûbûn Sûriyê, bavê wî dixwest li Helebê bimîne ji ber ku karê zêrfiroşan gelek baş bû di wê demê de. Lê rojekê Azad ji dibistanê vedigere û straneke li ser dîktatorê berê yê Sûriyê Hafiz El-Esed ji bavê xwe re dibêje, heş di serê bavê Azad de namîne û sîleyek li kurê xwe dixe. Bavê Azad ku gelek êş ji rejîma Esed dîtibû, nexwest ku zarokên wî perwerdeya rejîma Baasê werbigirin, her tişt li pey xwe hîşt û dîsa vegeriya Katalonyayê. “Ez gelekî spasiya bavê xwe dikim ku li Sûriyê nemabû, ji ber ku bawer nakim ku ev formasyona zanistî û çandî ku min li vir wergirtiye li Sûriyê jî bidest bixista” Azad dibêje.

Di nav birayên xwe de tenê Azad bi kurdî diaxive, ji bo fêrbûna zimên Azad du caran serdana Sûriyê kiribû û bi awayekî nepenî zimanê kurdî xwendibû. Azad dibêje ku bandora temaşekirina televîzyonên kurdî jî hebû, nemaze Kurd-1 bi pêşkêşkirina programên curbecur û dersên zimanê kurdî.


Azad albumên hunermendên kurd download nake, yên orîjînal bi pere dikire

Wêne: Rûdaw

### Li ber strana Zînê rondikan dibarîne

Azad xwendina seretayî û navîn li Calafellê xwendibû, ew ji 18 saliya xwe de bi pirsa kurdî mijûl bûye û herdem dixwest bala Katalanan bikşîne ser Kurdan: “Pirsgirêka kurd di medyaya katalanî û spanî de mijareke veşartî û nepenî ye, ji ber wê min reklam û têkiliyên gîştî xwend, ji bo ku ez bi awakî zanistî behsa pirsa kurdî bikim.”

Digel ku ew hemwelatiyê Spanyayê ye, lê ew xwe wek Kurd-Katalan bi xelkê dide nasîn: “Ez xwe wek Kurd-Katalan dibînim, herdem peyva Kurd jî berî ya Katalan bilêv dikim.” Azad wiha pêde diçe: “Dema straneke katalanî dibihîsim, pir bandorê li min nake, lê bandora stranên kurdî heye, hinek jî min didin giryandin, wek strana “Zînê” ya Nizamettin Ariç ku berî deh salan di ROJ TV de bi awayekî zindî gotibû. Min ev stran xistiye kanala xwe ya Youtube û her ku ez vê stranê dibihîzim rondikan dibarînim”.

### Vîdyoyên sînemaya kurdî edît dike

Azad di serdanên xwe de ji Sûriyê gelek CDyên stranên kurdî ji televîzyon û konsertan bi xwe re dianîn û gelek klîp û stran li ser kanala xwe di Youtubê de weşandine. Wî herwiha gelek vîdyo derbarê sînemaya kurdî de edîte kirine. Vîdyoyên ku Azad hildan e (upload kirine) nêzîkî 3 mîlyon car hatine temaşekirin.



**Azad eger rojekê fîlmek kurdî çêke wê di înternetê de belav bike**

Digel ku hildana van berheman di înternetê de weke korsanî tê dîtin, lê Azad tenê bi mercekî belavkirina nerewa ya xebatên hunerî destek dike, “Ez korsaniyê destek nakim, lê eger ev xebat xwedî nirxeke çandî bin û mirov nikaribe van xebatan bidest bixe, hîngê ez ligel korsaniyê me. Rast e, hunermend divê ku ji berhemê xwe sûdê werbigire, lê çanda kurdî divê bê belavkirin. Rojekê ez fîlmekî kurdî çêbikim, ez ê bi rêya înternetê bi belaş belav bikim. Lê divê em alîkariya hunermendên xwe bikim û xebatên wan bikirin. Di serdana xwe ya dawî de, min ji Fransayê hemû albûmên Mîkaîl Aslan kirîbûn û nêzîk de diçim Almanyayê û li wir ez ê albûmên nû yên Nizamettin Ariç û hunermendên din jî bikirim.”

### Nabe ku şîrketên tirkî fîlmên Yilmaz Guney bififroşin

Ev bûn du sal Azad di dibistana sînemayê de dixwîne. Di van du salan de Azad derhêneriya heft kurtefîlman kiriye, du ji wan bi kamereya 16mm kişandine û her wiha du fîlmên dokumentar çêkirine. Ji ber ku fîlmên Yilmaz Guney bi spanî nehatine belavkirin, Azad û hinek hevalên xwe niha dest bi wergerandina fîlmên Yilmaz Guney ji bo zimanê spanî kirine: “Em dixwazim berhemên vî derhênerê mezin bên temaşe kirin. Fîlmên Yilmaz mîraseke netewî ye û ya mirovahiyê ye. Mixabin niha hin şîrket hene ku doz li dijî malbata Yilmaz Guney vekirine û hinek doz jî qezenc kirine û sûdên aborî werdigrin, xwe kirin xwediyên mafên belavkirina fîlman. Ev şîrketên tirk nabe ku fîlmên Yilmaz Guney bifroşin, maf tenê ya malbata Yilmaz Guney e.”

Azad wiha didomîne: “Min pênc fîlm di kanala xwe de hildan, lê hemû hatin jêbirin û Youtube nameyek ji min re şand û nivîsandiye ku "Eger tu carekî din fîlmên Yilmaz Guney biweşînê, emê kanala te bigrin.” Azad destnîşan dike ku ew kesên ku fîlmên kurdî bi rêya înternetê temaşe kirine gelekî spasiya wî dikin ku wî ji wan re ev derfet peyda kiriye, ji ber ku ev fîlm li Spanya ne di saloyên sînamayê de û ne jî li ser DVD peyda dibin.

### Pêdiviya sînemaya kurdî bi nifşeke hêzdar heye

Me ji Azad pirs kir ka ew sînemaya kurdî çawa dibîne, wî wiha bersiv da: “Fîlmên Behman geşbûnek dan sînemaya kurdî, her wiha gelek derhênerên girîng hene, wek Kazim Oz, Yuksel Yavuz, Hiner Selim, Hüseyin Karabey, Şewket Emîn Korkî, lê ev hejmareke hindik e, pêdiviya me bi nifşeke hêzdar heye. Hêvîdar im ku derhênerên ciwan derkevin, wek Miraz Bêzar ku formasyona xwe li Ewropayê çêbikin û biçin Kurdistanê û fîlmên serkeftî weke "Min Dît" bikşînin. Divê em zêde bala produktoran bikşînin ser xwe, gelek projeyan çêbikin, nemaze derbarê çîrokên orîjînal, ne tenê di warê dramaya gilî û gazincan li ser rewşa Kurdan, lê her wiha di warê komedya û aksiyon de, sînemaya tirsê (horror) û hwd. Ev jî nayê wateya ku em ji derd û êşa Kurdan bi dûr kevin, berevajiya wê mirov dikare bi rêya fîlmê horrorê bêtir bala cîhanê bikşîne ser pirsa kurdî.

### Ji bo rûxandina rejîma Baasê têdikoşe

Di van şeş mehên dawî de Azad bi şoreşa Sûriyê re gelekî mijûl bûye. Ew di Grûba Multimedia ya Şoreşa Sûriyê de li ser facebookê cih digre. Di meha Îlonê de jî Azad beşdarî Kongreya Ciwanên Kurd li Derve bû, ya ku li Parlemana Swêdê li Stokholmê hatibû lidarxistin. Azad derbarê vê beşdarbûnê de dibêje: “Kongre ezmûnek xweş bû û nayê jibîrkirin, cara yekemîn bû ku ez tevlî konferansekê dibim ku hemû kesên amade zimanê min diaxivin. Kongre gavek girîng bû ji bo damezrandina tevgerek serbixwe ya girêdayî bi Kurdên Sûriyê.”

Azad niha di nav kombûna Ciwanên Kurdên Sûriyê li Derve (ASKYA) bi awakî çalak tevdigere ku ew jî ji bo rûxandina rejîma Sûriyê û piştgiriya xebata ciwanên kurd li welat dixebitin.

*Kanala Azad Kanjo: http://www.youtube.com/user/Azadkanjo*

# Dalkurdê firên kir




*Klûba futbolê ya Kurdên Swêdê Dalkurd jî lîderiya lîgê daket, lê hê jî yek ji favoriyên girîng yê lîgê ye. Dalkurdê di du maçên dawî de tenê 1 pûan bidestxist û ji rêza yekem daket heta rêza 4`mîn. Pûanên Dalkurdê 43 ne û pûanên lîderê lîgê jî 45 in. Ango di navbera Dalkurd a 4`mîn û Umea FC ya yekemîn de tenê du pûan hene. Di vê sezonê de 24 maç hatine leyîstin û hê du maç jî mane. Encama herdu maçên dawî yên Dalkurdê wiha ne:*
*Dalkurd - Frei 1-1*
*Valsta Syrianska - Dalkurd 4- 2*

| Tabelle: | Maç | Averaj | Puan |
|---|---|---|---|
| 1- Umeå FC | 24 | 13 | 45 |
| 2- Väsby United | 24 | 20 | 44 |
| 3- Sirius | 24 | 16 | 44 |
| 4- Dalkurd FF | 24 | 13 | 43 |



Ew hîn neketine lîga fermî, lê kûpaya herêmî bidestxistin. Rêvebir û hemû leystikvanên FC Kurd ji Rojavayê Kurdistanê ne.

# "Nizanim ku em derbasî lîgeke jor bibin, em ê çawa bikin"

**Dortmund (Rûdaw) -** FC Kurd li bajarê Dortmundê ji aliyê Kurdên Rojavayê Kurdistanê ve di sala 2010ê de hatiye damezirandin û bêyî ku destûra damezirandina wê bê dayîn di Sibata 2011ê de jî dest bi sezonê kiriye. Li gor zagonên nû yên sporê dema ku tîmeke amator nû tê damezirandin sala yekem divê wek tîma hoby di Freizeitliga de (Lîga bê dem) bileyîze û piştî serkeftina vê lîgê dikare derbasî lîga fermî Kreislîga C bibe.

Wek ku damezrêner û serokê tîmê, herwiha leystikvanê FC Kurd, Ciwan Elbada ji Rûdawê re ragehand ew niha lîderê Freizeitliga ne û ji bilî vê serkeftinê wan kupaya DFP (Deutsce Freizeit Pokal) bi dest xistine. "Lewma şansa me gelek zêde ye ku em di sezona dahatî de wek tîmeke fermî dest bi lîga normal bikin."

Di lîga Freizet de, ango di lîga bê dem ya ceribandinê de niha li gel FC Kurd 12 tîmên din jî hene. Serokê FC Kurd Ciwan Elbada (di wêneyê jêr de ji milê çepê kesê duyem) daxuyand ku wê bi giştî 22 maç bileyîzin û derbarê rewşa tabelleyê de got, "Em piştî 18 maçan ligel 40 pûan niha lîderê lîgê ne, li dû me Eintracht Mengede tê û pûanên wan jî 37 in."

Eintracht Mengede ew tîm e ku du hefte berê ji bo fînala kupaya DFP bi FC Kurd re leyîst û 4-2 maçê winda kir.



### "Hertiştê me kurdî ye"

Li gor agahiyên ku Ciwan Elbada dane me 21 leystikvanên FC Kurd hene û hemû jî Kurd in. Elbada got, "4 ji van ji Başûrê Kurdistanê ne, 17 kes jî ji Rojavayê Kurdistanê ne û çend ji wan berê di lîgên profesyonel yên Sûriyê û Almanya de leyîstine. Mînak Mervan Reşîd di tîma NRW Preussen Munster de leyîstiye û niha tîma Bochumê ya duyem, Bochum 1848 wî dixwaze. Îsam Suleyman jî di lîga Sûriyê ya bilind de û di tîma herêmî ya NRW Hemmer de leyîstiye."

Ciwan Elbada got ku ew wateya nav û rengên formaya xwe li ser her tiştî digirin û behsa pêwendiya FC Kurd û saziya sponsorê ya alman DEW21 kir. Elbada ragehand jiber karê wî têkiliyên wî bi saziyên fermî yên alman re gelek xurt in û got: "Saziya DEW21 ya Dortmundê ku hemû elektrîk û ava germ a Dortmundê organîze dike, di destpêka sezonê de sponsoriya me kir, piştî serkeftinên me li pey hev, têkiliyên me bi wan re xurt bûn û xwestin ku bi me re peymanek nû îmze bikin. Lê me qebûl nekir." Elbada daxwazên DEW21 wiha vegot, "Xwestin ku li binî logoya me navê xwe deynin, li ser kupaya ku me bi dest xist xwestin navê xwe deynîn û li ser formaya me jî xwestin hinek guhertin çêkin, mînak ji me xwestin ku em rengê formayê bikin oranj. Me ev yek qebûl nekir û têkiliyên me qut bûn."

FC Kurd û tîma Kurdan ya din FC Roj di heman saheyê de antrenmanên xwe dikin; her du tîm jî heta niha saheya wan a taybet tune. Ciwan Elbada got ku pêwendiyên wan bi hev re xurt in, bihev re çend caran maçên dostanî kirine û demekê xwestine bibin yek û got, "Lê nebû. Em niha wek du tîmên bira li ser lingên xwe disekinin."

Ciwan Elbada gazin ji hestên berpirsiyartiya kêm ya leystikvanên FC Kurd dike û di dawiya axaftina xwe de dibêje, "Em tenê çar kes mesrefên tîmê didin, mesrefên maçan, yên hekeman, yên fermî dikeve pişta me her caran. Gelek zehmet e ku mehê 10 euroyan ji leystikvanên xwe bistînin. Lewma eger em derbasî lîga jor bibin wê mesrefên me zêde bibin û bi vî awayî jî nameşe."

Di 1ê Cotmehê de FC Kurd ligel Eintrach Mengede bo Kupaya Freizeitlîga maç kirin û di encam de FC Kurd 4-2 bi ser ket û kûpayê wergirt.

FC - Kurd Dortmund



# Di CDya nû de Ciwan Haco & Hulya Avşar duet dikin

## “Ez naxwazim bûyerê çêkim, divê ew min çêke...”

Ciwan Haco, hunermendekî siyasetşop e, guhdar û çavgerê pirsa netewî ye li herçar perçeyên Kurdistanê û li her deverên cîhanê ku kurd lê dijîn. Pir xemgîn e bi nebûna cîwarekî ku Kurd tê de serbixwe û serfiraz bin û xwediyê dewlet û xak û asîman bin.

Ciwan Haco gelek stranên radîkal di rêveçûna xwe ya hunerî de ristine û di hin deman de, qîr daye miletê xwe, lê dibêje: Nema êdî divê ez xelkê sorkim û rakim ser piyan û ez li derveyî welat bijîm, ya rast ew e ku buyer ji hundirê welêt xwe çêke û wî çaxî hûn ê bibînin ku çawa pîtê agirê dilê min di herêmên rojava de ronî bide û bibe nejdvanên şoreşê ji Efrînê ta Kobaniyê, Qamişlo, Tirbespî û Dêrikahemko.

Ciwan Haco di CDya xwe ya dawî de stranekê bi Hulya Avşar re duet dike û dibêje, “Em dikarin wiha xwe bi Tirk û Ereban bidin nasîn.”

**Rudaw: Ev CDya te ya nû ya çenda ye? Çîroka wê çawa ye?**

**Ciwan Haco:** Ev CD dibe 15`mîn. Min li bajarê Hamburgê tomarkir, çîroka wê heye: Dema ez 15 salî bûm, min guhdarî radyoyeke tirkî dikir ku ji Amedê dihat weşandin, bê guman hin ji wan stranan li xweşiya min dihat. Xuşka min Dîlber gotinên wan bi rêk û pêk saz dikirin, bi vî awayî min bi dest stranan kir, piştî hatim Almanya xelkên me ji min xwestin ku vegerim awaz û ritmên kevin. Lê di wê demê de, ez bi stîleke nûjen re mijûlbûm û bi wê rêgehê ez hatim nasîn û cawaziyeke min peydebû, û ew daxwaz îro pêkhat di vê cd e ya nû de.

**Cudabûn heye ji CDyên berê, ji layên gotinan yan jî muzîkê ve?**

Belê, ji aliyê muzîkê ve bi şêweyekî klasîk saz bûye, digel modern e jî, lê bi krasekî kevneşopî hatiye avakirin, bi piranî meqamê beyat e. Herwiha ew tiştekî bingehîn e di stranên zaravê kurmancî de. Bi têkstekî serbixwe ye jî, bi tevahî 11 stran in, yek jê gotinên min in û herwiha yên Cegerxwîn, Yûsiv Berazî... Di vê CDyê de, wê bandora muzîka pop, caz, tunebin. Mebest ji vê ew e ku ez hindekê vegerim sazên pêşîn ku ji min re derfeta yekemîn hat, wek derwazekê ketime nava cîhana hunerî.

**Diyar e Hulya Avşar, tevlî vê CDyê bûye û we stranek bi hevre gotiye, rastiya wê çi ye?**

Belê rast e, Hulya Avşar bi eslê xwe ve Kurd e, gelek metirsînên tewanbar di axaftinên wê de peyde dibûn, ji ber wisa girîngiya strana bi hunermendeke weke Hulya û bi alîkariya wan, ez ê bikarim deng û stranên kurdî bigihînim miletê tirk û bi milyonan însan guhdarî bikin û hemûyan vehisînim ku em aştîxwaz in, xwediyê muzîk û hunerê ne. Bi baweriya min wê alîkariyê bide çareseriya pirsgirêka kurd.

**Medya tirkî, te wekî hunermendekî alîgirê PKK dibîne, digel ku stranên te bi gelemperî piştgêriya aştî, wekhevî û biratiya gelan dike, ti çawa vê yekê dinerxînî?**

**Bi hunermendeke weke Hulya re ez ê bikarim deng û stranên kurdî bigihînim bi milyonan însanan...**

Ez wekî kesayetî, hîc tevlî rêxistinên siyasî nebûme, PKK realîteyek Kurdan e tevgereke berfireh e, weke her partiyên sereke li seranserî Kurdistanê, ez wekî hunermendekî kurd min li ser herçar parçeyan strandiye û her bûyerekê rudayî hestê min lê xwedî derketiye û dilê min jê re lêxistiye, Helebçe, Enfal, Geliyê Zîlan û Serhildana Qamişlo.

**Li ser vê mijarê, em dixwazin bê zelal kirin, gelo alîgiriya hunermendekî mîna te, wê zererê nede ravêja te?**

Sedî sed wilo ye, min di rêveçûna xwe ya hunerî de, car caran stranên radîkal jî tomarkirine. Ev helwest ne ji tunebûnê yan jî ji valahiyê hat, hestên rasteqînî yê hunermend girêdayî ye bi rewşa milet ve, lê divê ev bîr û baweriyên çewt bên guhertin, tenê bi alavên aştî û diyalogan pirsgirêk û aloz çareser dibin, ew amûrên kevin û bêzar kîndariyê li hemberî gelan diçîne, şer û kuştin divê raweste, divê metoden sivîl xwe bidin pêş. Pêwîst e em jî wek dor û derê xwe bi rengên nûjen xebata xwe bidomînin, ji xelkên cîhanê re rastiya miletê kurd nîşan bikin, bi rêgeya fîlman, muzîk, tv...

**Tu hunermendekî ji Rojavayê Kurdistanê yî û haya te ji xwepêşandanên li seranserî Sûriyê jî heye, gelo hunera kurd dikare di vir de roleke çawa bileyîze?**

Bê guman şoreş li dar e, lê eger em werin herêmên Kurdan û rola wê di vê şoreşê de çi ye, divê em bêjin ku biryar di destê hundir de ye, ew ji min baştir serdema xwe dinase, rastî ne ew e ku li derveyî welêt qîra bidim yan jî berê wan bidim tevlîheviyê û wan rakim ser piyan, ev durûtî ye û xapandin di vê helwestê de heye. Gava pêşin ew e ku bûyer li Rojavayê Kurdistanê xwe çêke, ne erka huermend e ku xwe bike serwerê miletê xwe, tenê piştgêr û alîkar be.

**Ciwan Haco li gelek deveran bi taybetî li parçê Kurdistana Bakur, li ser hilma şoreşê strandiye, gelo ma hîna hilma şoreşa Sûriyê hestê Ciwan Haco ne hejandiye?**

Belê, di sala 2004ê de hilma berxwedana bajarê Qamişlo li hestê min da, yekser di roja siyan de fêrmêskên çave min rijiyan û min li ser pakrewanên serhildanê strand.

Ez alîkar û dilsozê xwepêşandanên ciwanên kurd im ku li hemû bajar û bajorêkên herêmên Rojava de diyardibin, lê çima ta îro min ne strandiye? Ji ber bûyer hîna germ nekeliyaye da ku hestê min bihejîne, stran ji ber xwe nayê, lê ez li bendê me ku hilm û heja berxwedana Rojavayê Kurdistanê hest û çerqê giyanê min bihejîne. Dixwazim bêjim hîna buyerê hilma germê nedaye hestê min, ez naxwazim bûyerê çêkim, gerek ew min çêke.

*Hevpyvîn: Abdulkader Bedredîn*




Wêne: Rûdaw

# Yekemîn Kongreya Cihanî ya Kurdî tije zanist û hêstir bû

## Rêveberê Giştî yê Kongreyê:

*Em dixwazin li ser wê yekê bixebitin ku zîhna serkirdeyên welatan bo dewletdariya Kurdan amade bikin*

**Rotterdam (Rûdaw) -** Di 1. "Kongreya Cîhanî ya Kurdî" de li bajarê Hollanda Rotterdamê doktorekî kurd beşdarên kongreyê giriyandin û Leyla Zana jî got "baştir e ku dewleta me tune be, lê neku em dewleteke zalim bin." Ew kongre bi beşdariya bêtirî 100 zanyar, kesayetî û rojnamevanên kurd û navnetewî di rojên 7 heta 9ê Cotmeha 2011ê birêveçû. Beşdarvanekî biyanî bo Rûdawê got "me bi rêya babetên zanistî yên vê kongreyê rewşa Kurdistanê baştir fêm kir." Tevî vê yekê jî hin beşdarvanên kurd rexne li kongreyê girtin ku babetên wê bêtir girêdayî Başûr û Bakûrê Kurdistanê bûn û beşên din hatibûn jibîr kirin.

Herdu piştgirên kongreyê Carol Prunhuber û Leyla Zana di merasima vekirina kongreyê de gotin pêşkêşkirin. Prunhuber weke kesayetiyeke akademîk û dosteke Kurdan behsa dîroka lobîsaziya Kurdan kir. Wê got ku "mimkun e gelek kes vê yekê nizanin, lê kesê yekemîn ku karê lobiyê ji bo Kurdan dest pê kir, Mele Mistefa Barzanî bû. Ew dema li Amerîka bû, ev kar dimeşand." Prunhuber xwediyê pirtûkeke derbarê jiyan û berxwedana Dr. Ebdulrehman Qasimlo ye. Li gor Prunhuber, Dr. Qasimlo jî weke kesayetiyeke siyasî û akademîk xebateke zêde di wî warî de encam da. Piştre Endama Parlemena Tirkiyeyê û kesatiya navdar a kurd, Leyla Zana gotineke bixêrhatinê pêşkêş kir. Zana di axaftinên xwe de behsa derdeseriyên xwe û gelê xwe kir. Wê herwiha got ku dilê wê xweş e ku bo cara yekemîn di dîrokê de kongreyeke navnetewî bo Kurdan tê sazkirin. Wê parlementera kurd behsa hêviya Kurdan a ji bo avakirina dewleta Kurdistanê kir.

Leyla Zana, ku ji ber sondxwarina wê bi zimanê kurdî di Parlemena Tirkiyeyê de, deh salan di zîndanê de mabû, got "min gelek caran hizra rewşa me kiriye û min ji xwe pirs kiriye; gelo baştir e mirov bêyî dewlet be û zilm li gelên din nekiribe, yan xwedî dewlet be û zilm li gelên din kiribe? Ez divê ji we re bibêjim ku bersiva min jî ev bû; gelekî baştir e ku mirov bêyî dewlet be, ji wê ku dewleta mirov hebe û zalim be." Zana berdewam kir û got "rast e, me gelek nexweşî dîtine, lê tiştê ku Kurd pê serbilind in ewe ku piştî sed salên din jî neviyên me pêwîstî wê yekê nabin ku himber gelên din şermezar bin û lêborînê ji wan bixwazin." Van axaftinên Zanayê çepikeke bihêz li pey xwe anîn û bû sedema ku hin amadebûyî jî hêstiran bibarînin.

### 28 lêkolînên zanistî hatin pêşkêş kirin

Di Kongreya Cihanî ya Kurdî de bêtirî 28 lêkolînên zanistî li ser aliyên cuda yên jiyana Kurdan li hundir û derveyî Kurdistanê hatin pêşkêş kirin. Beşeke mezin a beşdarbûyên kongreyê zanyarên navdar ên kurd û biyanî bûn, ku li gor axaftina organîzer û rêvebirê giştî yê kongreyê, Alan Dîlan, "ev kesatî bi karên xwe yên zanistî bûne navên diyar û naskirî li ser asta cîhanê." Dîlan dakokî li ser wê yekê kir ku ev kongre "kongreyeke zanistî ye û armanc ewe ku pêşwaziyeke zanistî li lêkolîna pirsên taybet ên Kurdistanê bike."

Nûnerê berê yê Hikûmeta Herêma Kurdistanê li Skandînavyayê, Taha Berwarî jî bo Rûdawê got "girîngiya kongreyê di pirrengiya babetên wê deye, ku ji aborî, tendirustî û kulturî bigre heta dîplomasiyê babet bi şêweyekî zanistî hatine amadekirin." Berwarî ku zêde li ser pirsên girêdayî bihêzkirin û sûdwergirtina ji revenda kurdî radiweste, di wê barê de bû ku "ev destpêkeke gelekî baş e û karekî akademîk yê serketî ye, ez hêvîdar im ku bibe pireke bihêz di navbera Kurdistaniyên derve û hundirê Kurdistanê de, bi taybetî Başûrê Kurdistanê."

Lêkolîneke din ku gelekî bala amadebûyan kişand, lêkolîna mamosteyê Zanîngeha Koreyê ya welatê Koreya Başûr, Elmas Hêşmetî, derbarê guhertinên aborî li Kurdistanê bû. Hêşmetî berê bo demekê li Başûrê Kurdistanê mamosteyê zanîngehê bû, herwiha wî pirtûkek jî derbarê aboriya Başûrê Kurdistanê nivîsandiye. Hêşmetî rexneya wê yekê li sîstema aboriya Kurdistanê girt ku "heta niha derbarê çalakiyên aborî de ti statîstîkek tune û vê yekê jî wisa kiriye ku xebateka zanistî derbarê wan aliyên girîng gelekî zehmet be." Hêşmetî dilgiraniya xwe ji wê yekê diyar kir ku li Kurdistanê warê çandiniyê ber bi nemanê diçe û her tişt ji derve tê." Sedema vê yekê jî Hêşmetî vegerand bo nebûna saziyên taybet û çalak bo xurtkirina vî warî li Kurdistanê. Wî herwiha behsa wê yekê jî kir ku astê berhemdarî û çalakiyan li cem mirovê kurd nizm e û vê yekê jî wisa kiriye ku "niha berevajî demên berê, bo her tiştî çavê wan li derve ye."

Hêşmetî nûjenkirina sîstema perwedeyê weke bingeheke girîng a xurtkirina warê aborî li Kurdistanê da zanîn û mînaka ezmûna Koreya Başûr da û bilêv kir ku "mîna Kurdistanê ti samaneke wan a sirûştî ya zêde jî tune, lê aboriya wan pêşketî ye." Ew mamosteyê kurd ê ji Zanîngeha Koreya Başûr di wê baweriyê de bû ku "sîstema perwerdeyê li Kurdistanê divê bi şêweyekî be ku ligel hewcedariyên bazarê bigunce û pisporan li ser bingeha hewcedariyan bighîne.""

### Saziyên taybet bo Kurdên diyaspora

Alan Dîlan behsa pêşwazîkirina hemû partî û serkirdeyên siyasî yên kurd li kongreyê dike û dibêje "ev piştevaniya wan bo me dilgermiyeke mezin e." Alan Dîlan bi taybetî amaje dide rola Cîgirê Serokê Partiya Demokrat a Kurdistanê, Nêçîrvan Barzanî, ku li gor axaftina wî "piştevaniya wî ya mezin ku li me kir û ew nameya wî bo me nivîsand, hêzek da me ku em projeyê bidomînin." Alan Dîlan di wê baweriyê de ye ku piştî bidawîbûna kongreyê wê karê rasteqîne dest pê bibe û "em niha di qunaxa dewletsaziyê de ne û pêwîstiya me bi piştevaniya dewletên din heye. Em dixwazin ev kongre bibe pirek navbera van welatan û Kurdistanê. Em herwiha dixwazin li ser wê yekê bixebitin ku bi şêweyekî zanistî zîhna serkirdeyên van welatan bo dewletsazî û dewletdariya Kurdan amade bikin." Taha Berwarî jî ku di nivîs û hevpeyvînên xwe de behsa pêwîstiya girîngîdayîna bi îmkanên Kurdên diyasporayê kiriye, ew jî di wê baweriyê de ye ku piştî sazkirina vê kongreyê, êdî mesela avakirina saziyên çavdêrîkirin û îdarekirina îmkanên Kurdên diyasporayê bûye pêwîstiyeke mecbûrî bo sûdwergirtinê ji wan bo xizmeta Kurdistanê. Berwarî herwiha di wê baweriyê de ye ku hundirê Kurdistanê baştir sûdê ji van îmkanan werbigre û "li Kurdistanê pêwîste saziyeke taybet hebe bo Kurdistaniyên derveyî welat. Hem bo organîzekirina karên wan piştî vedigerin Kurdistanê û hem bo sûdwergirtina ji îmkanên wan li derveyî welat. Li Kurdistanê eger çavdêr û serperişt hebin, em ê bikarin behsa dubare vegeriyana Kurdên xwedî îmkan bikin bo hundirê Kurdistanê."

### Rexne li kongreyê

Tevî hemecoriya babetên kongreyê, lê hin amadebûyan rexneya wê yekê dikirin ku di kongreyê de bi pileya yekem girîngî bi Başûr û Bakûrê Kurdistanê hat dayîn, kêmtir behsa Rojava û Rojhilatê Kurdistanê hat kirin. Alan Dîlan di bersîva vê rexneyê de got "me tenê bangek şandibû, lê me ti kes vexwendî pêşkêşkirina lêkolînan nekiribû. Ji nava wan lêkolînên ku ji aliyê hin birêzên li pey banga me hatibîn, me baştirîn lêkolîn hilbijartin." Dîlan herwiha got "em wisa difikirin ku Kurdistan yek welate û eger vê carê lêkolînên derbarê perçeyeke nîştimanê me kêm bin, bila di carên pêş de berevajî be.

## Biyanî çi dibêjin?


Wêne: Rûdaw

Di rojên kongreyê de, ji bilî wan zanyarên biyanî yên derbarê Kurdistanê pirtûk û lêkolîn nivîsandine, herwiha kesên din jî hebûn. Endamê Partiya Sosyalîst û parlementerê hollandî Harry Van Bommel yek ji wan mêvanan bû ku guhdariya lêkolînan kir û beşdarî gotûbêjan kir. Van Bommel ev kongre weke "berçav ronîkirineke mezin derbarê Kurdistanê" bi navkir. Herwiha mamosteyê Zanîngeha Îrlanda, Dr. Peter Hermann di wê baweriyê de bû ku "ev kongre girîng e, ji ber ku em bi vê rêyê dikarin bizanin li Kurdistanê di hemû waran de çi dibe." Wî, ku babetek derbarê xebatkirina bo azadî û mafên mirovan pêşkêş kir, di beşeke lêkolîna xwe de behsa wê yekê kir ku "ev pirs girêbesteke di navbera hikûmet û hevwelatiyan de. Ango lihevhatin tê kirin derbarê wê yekê ku hikûmet azadî û mafan bide hevwelatiyan, ew jî erkên xwe himber hikûmetê pêk bînin." Dr. Hermann bo Rûdawê got ku wî sûdeke zêde ji babetên din jî wergirt, herwiha "me bi rêya babetên zanistî yên vê kongreyê rewşa Kurdistanê baştir fêm kir."

Mêvaneke din a biyanî li kongreyê, pispora warê turizmê Yvonne Van Der Bel bû. Van Der Bel bo Rûdawê behsa wê yekê kir ku wê di sala 2005ê de serdana Başûrê Kurdistanê kiriye û got "ev deh sal in ez dosta Kurdistanê me. Ez berê bi rêya hevalên xwe yên Kurd ên ji Kerkûkê bûme dosta Kurdistanê. Ez Kurdistanê û bi taybetî jî Başûrê Kurdistanê baş nas dikim. Ez gelekî kêfxweş im ku kongreyeke baş hat çêkirin. Di nava bîrûboçûn û zaniyariyan de cudahî hebûn derbarê ka rewşa niha ya Kurdistanê çawa ye. Ev jî zêde girîng bû." Van Der Bel weke gelek dostên Kurdan ên Rojavayî hevoka "Bakûrê Îraqê, yan Herêma Kurdistanê" bikar nayîne, ew bi ken dibêje "bi baweriya min navê rast Başûrê Kurdistanê ye û wê roj bê bibe dewlet."



Wezîra Dadê ya berê, Heidrun Merk:

# Hikûmeta Tirkiyeyê sala 1991ê 3 rojan ez zindan kirim

Şerê navxwe destkeftên mezin ji destên Kurdan da.

Siyaseta Sûriyê li himber Kurdan ne mirovane ye.

Ew şiyana guhdarîkirinê ku min li cem Barzanî dîtiye, heya vêga min di ti siyasetmedarekî cîhanê de nedîtiye.

Wezîra Dadê ya berê ya Eyaleta Niedersachenê li Almanya, Heidrun Merk, cara yekê bi rêya Kurdekî penaber li Almanyayê Kurd nas kirin. Merk ku carekê gotibû “Eger li Almanyayê ji dayik nebûma, min dixwest li Kurdistanê ji dayik bibûma”, ji Rûdawê re behsa doza Kurd dike.

**Rûdaw: Hûn weke dosteke nêzîk a gelê Kurd tên hejmartin, pêşî we çawa Kurd nas kirin?**

**Heidrun Merk:** Piştî ku di sala 1970yî de, bi rêya penaberekî Kurd bi navê Celal Barzanî min Kurd nas kirin. Min û wî çend siyasetvanên Kurd dîtin û li ser rewşa wê demê ya Kurdan ligel wan rûniştin. Piştî demekê Mele Mistefa Barzanî koça dawî kir, wê demê bêtir nêzîkî Kurdan bûm. Hêj zarok bûm, gava kesûkarên min qala gelê Kurd û Tîbetî dikirin, behsa wê zulm û zordariyê dikirin ku li van herdu gelan hatiye kirin.

**Kîjan ji wan bextreşiyên ku hatine serê Kurdan bêtir bandor li we kir û wisa kir berê xwe bidî Kurdan?**

Yek ji wan bextreşiyên ku bandor li min kir kîmyabarankirina Helebçe bû, herwiha koçberiya milyonî ya Kurdan di Adara 1991ê de.

**Heya vêga we çi ji Kurdan re kiriye?**

Di dema koçberiya 1991ê de, ez Wezîra Dadê ya eyaleta Niedersachsenê bûm. Wê demê çûme navçeya Colemergê û Silopiyê, daku li wir rewşa Kurdan bibînim. Min çend wêne û dîmenên video yên wan kesan girtin, ku penaber bûbûn. Piştî vegera min li ser sînor, hikûmeta Tirkiyeyê li ser wan wêne û dîmenan 3 rojan ez xistim zindanê, di demekê de bi sîfeta dîplomatîkî çûbûm derverê. Dûre xaka Tirkiyeyê li min qedexe kirin, lê belê piştî ku vegeriyam Ewropayê, li Parlemena Ewropayê me rexne li Tirkiyeyê kirin. Di encamê de qedexeya çûnûhatina min bo Tirkiyeyê betal bû, di cih de careke din hatime nav Kurdan li ser sînor.



Wêne: Malpera Gudrun Merk

Heidrun Merk li Hewlêrê (2010)

**Heidrun Merk:**

Heidrun Merk siyasetmedarek alman a ser bi Partiya Sosyaldemokrat a Almanya (SPD) ye. Merk sala 1945ê li gundekî başûrê Almanyayê ji dayîk bû. Merk ji sala 1986ê heta 2007ê endama Parlementoya Herêmî ya Eyaleta Niedersachsenê bû, ji 1990 heta 1998 jî Wezîra Dadê û Karûbarên Ewropayê ya Eyaleta Niedersachsenê bû. Ji sala 1998-2000 jî Merk Wezîra Jin, Kar û Karûbarê Civakî ya Eyaleta Niedersachsenê bû û di heman demê de jî Cîgira Serokê Wezîran a Eyaleta Niedersachsenê bû. Ji sala 1990-1993 jî Merk endama Komiyona Destûrê ya Hikîmeta Navendî û endama Komiyona Destûrê ya Eyaletan bû. Bi xwesteka xwe Merk di 2007ê de dawî li parlementeriya xwe anî. Merk bi kevneşaredarê bajarê Hannoverê û dostê Kurdan Herbert Schmalstieg re zewiciye.

**Ew wêne û dîmen hêjî li ba we ne?**

Belê, heya vêga hene. Eger Hikûmeta Herêma Kurdistanê ji min bixwaze, ez ê bidim wan, daku li muzexaneyên xwe deynin û nifşê nû bav û kalên xwe bibînin, ku çi nexweşî dîtin.

**We çi pirtûk li ser Kurdan nivîsandine?**

Sala 1992yê ligel hevserê xwe hatim Herêma Kurdistanê. Piştî vegera me, me pirtûkek li ser Kurdan bi navê 'şansê me tenê demokrasî ye' nivîsî. Navnîşana vê pirtûkê gotina pêşmergeyekî asayî bû, ne ku ya filozof an profesorekî.

**Gotineke we heye, dibêje “Eger li Almanyayê ji dayik nebûma, min dixwest li Kurdistanê ji dayik bibûma”. Ji ber çi we ev gotin kir?**

Ji ber du sedeman: Yekem ew dilovanî û hezkirina ku li cem Kurdan dibînim, di nav xelk û welatê xwe de nabînim. Duyem jî ji ber zimanê kurdî ye. Zêde hez ji zimanê Kurdî dikim, her çiqasî kurdî nizanim jî.

**We ti hewldan kirine ji bo hevnêzîkbûna Kurdan û Yekîtiya Ewropayê?**

Li her cihekî derfeta min çêbûbe min di qazanca Kurdan de gotin kiriye. Bi giştî min tiştekî mezin û berçav ji Kurdan re nekiriye, lê weke takekes min gelek tişt kirine, min hevkariya penaberên Kurd ên herçar parçeyên Kurdistanê li Ewropayê kiriye. Em bêtir xwe dikin xwediyê wan kêmneteweyên ku kêşeyên wan hene. Haya me jê heye, Kurd vêga li Sûriyê di rewşeke xerab de ne, li Îran û Tirkiyeyê jî bi heman awayî. Dizanim Yekîtiya Ewropayê weke ku tê xwestin li ser kêşeya Kurd nasekine.

**Asta siyaset û siyasetmedaran li Rojhilata Navîn û Kurdistanê çawa dinirxînî, di vê rewşa niha de?**

Dikarim bêjim li Rojhilata Navîn siyaseta Sûriyê li himber Kurdan siyaseteke xerab û ne mirovane ye. Mixabin wiha dibînim ku siyasetmedarên Îraqê ji siyasetmedarên kurd hez nakin, ev jî kêmasiyeke mezin e, ji ber ku siyasetvanên kurd dikarin xizmeteke baş a Îraq û Kurdistanê bikin. Lê wê dema ku şerê navxwe li Kurdistanê derket, ez wê gavê zêde ji siyaseta Kurdistanê qehirîm, min xwe ji karkirina bo Kurdan dûr kir, lê belê vêga vegeriyame, vêga dibînim Kurd siyaseteke rast dikin û hemû aliyên kurdî destên xwe xistine nav destê hev, ev jî ji bo Kurdan deskeftin e.

**Siyaseta PDK û YNKê çawa dibînî?**

Dibêm siyaseta herdu partiyan serkeftî ye. Serok Barzanî û rêzdar Celal Talabanî, herdu jî xwedî heybeteke mezin in û xizmeta vî welatî kirine, lê gava pirsek tê pêş ez xwe nêzîkî PDKê dikim. Bi taybetî hezkirineke min a zêde bo Barzanî heye, ew jî ji ber çend sedeman: Yek ji wan ew bû ku piştî serhildanê ez û ew bi hevre li bajar û bajarokan digeriyan. Barzanî ji nêzîk ve pirsa rewşa xelkê dikir, min didît Barzanî bi samîmî guhdariya êş û azarên xelkê dikir, şêwira xelkê dikir. Ew şiyana guhdarîkirinê ku min li cem Barzanî dît, heya vêga min li ba ti siyasetmedarekî cîhanê nedîtiye.

**Ew dilovanî û hezkirina ku li cem Kurdan dibînim, di nav xelkê xwe de nabînim. Zêde hez ji zimanê kurdî dikim, her çiqasî kurdî nizanim jî.**

**Kengî Kurdan derfet ji dest dan?**

Belê, carnan Kurdan derfetên baş ji dest dane: Weke mînak şerê navxwe yê PDK û YNKê destkeftên mezin bo Kurdan ji dest dan. Wê demê Ewropa bi çavekî zêde xerab li Kurdan dinerî. Tiştê giring ji bo siberojê, ku Kurd bi awayekî aştiyane pirsên xwe ligel wan welatan çareser bikin, ku tê de dijîn. Bo wan welatan jî baştir e pirsa Kurd bi awayekî aştiyane çareser bikin, nabe di siberojê de Kurd ti derfetan ji dest bidin, divê hevhelwest bin.

**Bi dîtina we di vê rewşê de divê Kurd siyaseteke çawa ligel derdorê bimeşînin?**

Weke siyasetmedareke alman, ez bo Kurdan pêşniyar dikim ku dema ragehandina dewleta kurdî tune, ji ber ku ragehandina wê dewletê, ku derdora wê hemû dijmin bin, pir zehmet e û şer li pey xwe tîne. Lewma wisa dibînim ku baştir e Kurd bi otonomiyê razî bin.

*Hevpeyvîn: Ehmed Êmînkî*



## Dr. Herbert Schmalstieg behsa çavdêriyên xwe yên li Kurdistanê dike

Hevjînê Heidrun Merk, dostê Kurdan û şaredarê berê yê Hannoverê Dr. Herbert Schmalstieg gelek caran serdana Kurdistanê kiriye û çavdêriyên xwe yên li başûr û bakurê Kurdistanê bi guhdaran re parve bike.

**Dem:** 13ê Cotmehê 2011
**Saet:** 19.30
**Cîh:** Weddahaisl im Naturpark Höllohe, 93158 Teublitz (başûrê Almanya)

## Aboriya Tirkiyeyê bi lez pêşdikeve

*Rûdaw - Ev çend sal in aboriya Tirkiyeyê bênavber bi pêş dikeve. Piştî ku di sê mehên destpêkê yên îsal de aboriya Tirkiyeyê ji sedî 11,6 bi pêş ket, di çarîka duyem ya îsal de jî aboriya Tirkiyeyê dîsa bi 8,8 bi pêş ket, weke ku ajansa netewî ya îstatîstîkan a Tirkiyeyê van rojan eşkere kir. Sala borî jî aboriya Tirkiyeyê ji sedî 8,9 bi pêş ketibû.*
*Tirkiye xwedî nifûsek 73 milyonî ye û di rêza welatên xwedî aboriya herî bihêz di rêza 17. de cîh digre. Tirkiye herwiha yek ji wan welatan e ku di van salên dawî de herî bi lez di aliyê aborî de bi pêş dikeve.*







# Deriyê Xabûrê bazirgan bêzar kirin

Leşkerên tirk li deriyê sînor çûn û hatina komyonan giran kirine.

Bazirganî di navbera Tirkiye, Îrak û Herêma Kurdistanê de niha di de salê de 10 milyar dolar in.

**Amed (Rûdaw) -** Digel ku di navbera Herêma Kurdistan û Tirkiyeyê de salane bazirganiyeke bi milyaran dolar tê kirin jî, hikûmeta tirk nêzî 20 rojan kamyonên bazirganiyê li Deriyê Sînor ê Xabûrê dide rawestandin. Ev yek jî dibe sedem ku bazirgan di warê neqliyeyê de 2-3 qat pere bidin û zirareke mezin bikin. Berpirsyarekî deriyê sînor ê Îbrahîm Xelîl jî dibêje "Efserên tirk li gor kêfa xwe tevdigerin. Ku bixwazin zû rê didin û carnan jî dereng dihêlin."

Li gorî agahiyên ku Rûdawê bi dest xistin, nêzî salek e di navbera Deriyê Sînor ê Xabûrê û Îbrahîm Xelîl de leşkerên tirk û karmendên dewletê çûn û hatina kamyonên bazirganiyê, ku bar dibin û tînin, giran kirine. Berê kamyonek herî dereng di navbera 2-3 rojan de derbasî aliyê din ê sînor dibû, barên xwe yên bazirganiyê datanî û vedigeriya. Lê ev salek e li Deriyê Sînor ê Xabûrê kamyonên bar ên bazirganan nêzî 20 rojan tên sekinandin û carnan ev sekinandin dibe mehek. Ji ber vê yekê jî lêçûna neqliyeyê li ser bazirganan 2-3 qat zêde dibe û bazirgan êdî ji vê rewşê bêzar bûne.

Serokê Komeleya Karsaz û Pîşesazên Amedê (DÎSÎAD) Raîf Turk derbarê mijarê de bo Rûdawê axivî û li hemberî vê rewşê nerazîbûn nîşan da. Turk bal kişand ku berê di navbera Herêma Kurdistanê, Îraqê û Tirkiyeyê de salê tenê nêzî milyarek dolar bazirganî dihate kirin lê niha ev hejmar bûye 10 milyar dolar.



Wêne: Rûdaw

Raîf Turk

**'Bila rêya rêwiyan û ya kamyonan cuda be'**

Raîf Turk diyar kir ku armanca wan ew e ku di nava salekê de bi nirxê 20 milyar Dolar bazirganiyê bikin lê ji ber rewşa çûn û hatina giran a li Deriyê Xabûrê ew bêzar bûne û wiha got: "Kamyonên bazirganiyê nêzî mehekê li deriyê sînor tên rawestandin. Ev yek jî zirareke mezin dide bazirganan. Lewre ji ber van sekinandinên li sînor, daxwazên (sîparîş) ku tên dayîn, nagihijin cihê xwe û ji ber vê yekê daxwaz tên betalkirin. Ev yek jî dibe sedem ku têkiliya baş a di navbera bazirganên Herêma Kurdistanê û Tirkiyeyê de, her wiha Îraqê de, sar bibe. Em dixwazin ku li Deriyê Sînor deriyekî din jî bê vekirin. Bila rêya taksî û rêwiyan cuda be û rêya kamyonên bazirganiyê cuda be. Eger ev yek bê kirin, ez bawer dikim ku bazirganiya di navbera herdu welatan de, di warê derfirotin û împortê de, wê ji hemû welatên din ên cîhanê derbas bibe."

Turk destnîşan kir ku bi vekirina deriyên nû, wê çûn û hatin, barkêşî û bazirganî leztir bibe û ev yek wê teşwîqeke zêdetir be ji bo bazirganiya herdu welatan. Turk da zanîn ku ji bo çareserkirina vê pirsgirêkê ew ê di rojên pêş de bi rayedarên hikûmetê re hevdîtinê pêk bînin û ew ê bixwazin şert û mercên bazirganiyê baştir bibin.

**"Dibêjin em kontrolê dikin."**

Rêvebirê Asayişa Komelgeha Îbrahîm Xelîl, Ebdulwehab Barzanî jî diyar kir ku sedema sereke ya dereng mayîna kamyonan li ser sînor, esferên tirk in û wiha got: "Her yek ji wan li gor kêfa xwe tevdigere, eger bixwaze zû rê dide û eger nexwaze jî dereng dihêle." Ebdulwehab behsa çawaniya birêvebirina karûbarên xwe kir û got ku rêvebirekî wan ê giştî heye û talîmatan jê werdigirin û got. "Lê tirk ne wisa ne, fermanên wan ên giştî û seranserî nînin. Ango leşker fermanan derdixe û tenê leşker pêgîriyê pê dike, polîs jî ji aliyê xwe fermanan derdixe, karmendên saziyên din jî bi heman awayî."

Rêvebirê Asayişê herwiha got "eger polîsên tirkan tiştekî bikin, Emniyeta wan nabêje ev ne li gorî biryaran e, herwiha leşker jî dema tiştekî dike, kes nabêje ev ne li gor fermanan e, ji ber ku talîmatên giştî û seranserî li wî alî tune ne." Ebdulwehab Barzanî amaje da wê yekê jî ku ew her hefte ligel aliyên tirkan civînan saz dikin û van giliyan dighînin tirkan û wiha got ku herwiha dema şand, balyoz, rayedar û bazirganên wan jî tên, ew van giliyan dighînin wan jî. Rêvebirê Asayişê behsa bersiva aliyê tirkî derbarê vê meseleyê de kir û got: "Tirk dibêjin em kontrolê dikin."

**Kamyonên bazirganiyê nêzî mehekê li deriyê sînor tên rawestandin. Ev yek jî zirareke mezin dide bazirganan.**

## Encama zewaca xizman:

# 10 zarokên *kêmendam* li gundekî 14 malî

*Dayîkek: Divê berdewam haya mirov ji van zarokan hebe, xwedîkirina wan zehmet e.*

Wêne: Rûdaw

**Newzad Mehmûd – Saman Beşaretî**

**Dûkan (Rûdaw) –** 37 sal in, Hekîm Hemesalih ti peyveke jî nebihistiye ji zimanê zarokên xwe. Şîretkariyên pizîşkî herdem şîretan li xelkê dikin ji jin û jinxwaziya nêzîk dûr bikevin, daku zarokên wan ji egera kêmendambûn û netimamiyê dûr bin, lê ev şîret weke ku hê jî negihiştibin gundê Hekîm, 10 zarok li wir, ku vêga tenê 5 ji wan sax mane, jiyaneke bi xof û bi azar dijîn, ku du ji wan zarokên Hekîm in.

"Sala 1982yê min ew herdu kurên xwe birin Bexdayê cem doktor, lê doktor hêviya min birî û got dermanê van nîne, pereyan ser wan xerc neke." Hekîm Hemesalih (67) dilşikestî li himber herdu kurên xwe yên ker û lal rûniştiye û bo Rûdawê diaxive.

Hekîm ev 37 sal in guhdariya peyveke wan herdu zarokan nekiriye. Ew ji bo wî behsa dirêj a çîrokeke xemgîn in.

### 5 mirine, 5 mane

Gundê Qelem Paşa, ku ji 14 malan pêk tê li nêzîka bajarokê Dûkan li Silêmaniyê ye. Li vî gundî gelek çîrokên bextreş weke ya Hekîm hene, ku ew jî weke Hekîm ligel dotmam û xizmên xwe zewicîne û zarokên kêmendam xwedî dikin.

Bapîrê Hacî Yasîn weke yekemîn avakirê vî gundî tê hejmartin, Hacî Yasîn behsa navê gund dike û dibêje: "Paşayê kor li vê navê bû û Qelem Paşa li vî gundî maye, êdî navê gund kirin Qelem Paşa."

Hacî Yasîn Selîm dibêje: "Ji ber ku em hemû xizmên hevdu bûn, jin û jinanîna me di nav hevde bû, wê demê jî berî jinanînê test nebû, lewma zarokên piraniya wan malbatan kêmendam derketin, ku ji 14 malan, 10 zarokên kêmendam hene û 5 ji wan mirin û vêga 5 ji wan mane."



Wêne: Rûdaw

Hacî Yasîn Selîm, rihsipiyê gundê Qelem Paşa li sîka dara tûyeke hewşa xwe de rûniştiye ku li gund dinêre, û dibêje: "Van zarokên kêmendam gelek derdeserî ji malên xwe re çêkirin."

Pîroz Mehmûd, gava çavê xwe li nav zarokên xwe digerîne, keda berdewam a zêdeyî 30 salên dayiktiya xwe bêhûde dibîne, çimkî ew jî diya 3 zarokan e ku mejiyê wan kêm e: "Van hemû salan zarokan xwedî bike û zarok jî di vê rewşa xerab de ne." Pîroz bi çavên şil berê xwe dide wan zokên ku ji bilî kenê bêwate tiştekî nedikirin.

Pîroz dibêje: "Gava em diçin gund û zarokan didin axaftin û wan hers dikin, êrîşî tiştên nava malê dikin û wan dişikînin, divê berdewam haya min ji wan hebe, xwedîkirina wan zehmet e."

**Ji % 80 xêzanên Pîremegrûn û Dûkan bi xizmên xwe re zewacê dikin**



Wêne: Rûdaw

Ev zarok pir caran xelkê gund jî bi xwe ve mijûl dikin, berî çend salan zarokekî Pîroz berbi çiyayê asê û bilind ê li pişt gund çûye, 3 rojan xelkên gund lê geriyane, lê di dawî de mirî dîtine. Du ji wan zarokên ne saxlem, di sala 1994ê de xwe avêtine ava mizgevta gund û xeniqîne.

Arif Ebdulrehman, xelkê gundekî nêzîkî Qelem Paşa ye, ew derbarê wî gundî dibêje: "Bi rastî baş girêdayî destê wan zarokan in." Arif yek bû ji kesên ku sê rojan li pey zarokê wendabûyî geriyaye.

### 7 hezar zarokên wiha hene

Deng û behsa serkêşiyên berdewam ên zarokên gundê Qelem Paşa xilas nabe, Hekîm Heme Salih dibêje: "Ev zarok ji nişkave diçin û divê li wan bigerî." Ew amaje dide kurê xwe yê mezin ku di sala 1984ê de gava dîtine di nava zeviyeke mayînan de bû "Li wir mayîn pê de teqiya û lingê wî jêkir."

Derbarê kurê xwe yê duyemîn dibêje: "Nasekine, carna bêyî ku em pê bizanin bi pî digihe Dûkan û bi şev xelk ji me re tînin." Ser û riha sipî ya Hekîm, xema dirêj a wan zarokane.

Doktorekî pisporê warê nexweşiyên zarokan amaje dide tesîrên negatîf ên vî corê jin anînê di civaka kurdî de û dibêje: "Ev yek ji kêşeyên herî mezin ên welatê me ye ku mixabin girîngî pê nayê dayin. Ji sedî 90ê xelkê navçeya Pîremegrûn û Dûkan heya vêga jî pêkut in li ser vî corê jinanînê."

Doktor Cemal Ehmed Reşîd, wiha axivî: "Li gor Ewropa, ev corên nexweşiyan li Herêma Kurdistanê 400 caran ji Ewropa zêdetir berbelav in, ji her 3 hezar xêzanên Ewropî, xêzanek bi vî rengî zewac dikin, lê ji sedî 80ê xêzanên van deveran bi xizmên xwe re zewacê dikin."

Dr. Cemal Ehmed, yek e ji navdartirîn doktorên zarokan li Silêmaniyê û dibêje: "Ji sala 1972yê ve min diqet kiriye, ev nexweşî pir zêde ne, nêzîka 150 corên nexweşiyan di vê pêwendiya nêzîk de hene, lê bi gelemperî ker û lalî û mejî û nesaxlemiya laş, vêga li Herêma Kurdistanê nêzîka 6 hezar zarokên wisa hene. Lê temenê wan dirêj nabe, hene heya 10 salan dijîn û hene zêdetir."

# Siyaset û tevgera Komara Tirk û bêaramiya herêmê



**Mahmut Kilinc**

Deh sal berê bigotana Komara Tirk (KT) wê destêwerdana karûbarê cîranên xwe bike, ma kê/kî bawer dikir? Ne pirr, dusê sal berê, bi rêûresmên şaşaa mizginiya siyasetek nû didan! Qaşo bi hemî cîranan ve Tirkiyeyê dest bi siyaseta "hîç pirsgirêk"ê (sifir problem) dikir. Ewil berê xwe berve başûr kirin, ji Îraqê dest pê kirin, paşê dor hat Libnan û Sûriyê. Pirr neçû serdana Îranê kirin, dijberiya bi sedan salan bi çend peyaman cihê xwe ji "hevalbendî û dostaniyê" re berdida.

Paşê bakur kete bîra wana, gelo nedibû ku dawî li sûcdariya jenosîta gelê Ermen bihata ku di dîrokê da yekem jenosît bû. Ev astenga hanê, ya ku di qada navneteweyî da her dem li ber pozê KT derdiket, dawî lê bihata! Çend çûyîn û hatin bi navbeynkariya "xwedanê dinyayê" lê nebû, diaspora gelê Ermen KTyê baş nasdikir, li ser Ermenîstanê karîger bû, rê neda durûtiyê.

Nesekinîn, vêcarê berê xwe dan Gurcistanê, rêveberiya vî welatî bi ber bayê "şîretên dostaniyê" ket, li hemberî Federasyona Rûsyayê wek gêrika li ber fîl serî hildide û Gurcistan kete rewşek dramatîk. Jixwe, ji Balkanan hinek dewlet wek karê nav malê bû....

Dirêj nekim, başûrê Kurdistanê jî tevlê, ji xenî Qibrisê yek bi yek seredana hemî cîranên xwe kirin û mizginî dan raya giştî, ku Tirkiye edî têkilî karûbarê cîranên xwe nabe, armanc peywendiyên dostane û bi rastî cîraniyekê "pak" dixwaze...!

**Rayedarek tirk: Eger li Arjantînê jî ji Kurdan re mafek bê dayîn em ê li dijî derkevin.**

Hinek derdor bi vê helwesta KTyê şaşo maşo mabûn, bi ya vana Tirkiye ketibû nav pêvajoyekî xweguhertinê. Lê yên ku kevneşopiya KTyê dizanibûn, geşedanî bi guman dişopandin, kesên ku ji dîrokê bi bes agahdarî û danehev hebûn, bi fikare li ber dawiya vê tevgerê diman.

Di rojên ku derbarê siyaseta KTê gumana "osmaniya nû" sext dibû, rê li ber pirsek din vedikir: Gelo, li herêmê KTyê dibe hêmana (unsur) bêaramiyê? Dîrok dubare dibe?

Herêma ku bi bizava eskerî wenda kiribû, îro bi tevgerek siyasî û bazirganî carek din lê vedigere. Bi ya hinekan Tirkiye bi vê tevgera xwe hewl dide ku li herêmê "demokrasi û laîsizmê" serdest bike. Heçku, bi xwe nîvdemokrasî ye, sih salên ku li dijî bizava bakurê Kurdistanê rêbazên eskerî bikar tîne, bi deh hezaran siyasetvanên Kurd di girtîgehan de ne.

Li hêla din em dibînin ku li herêmê siyaseta KTyê rê li ber tevgera îslamîst ya Sûnnî vedike. Dîsa, siyaseta wê ya derbarê Sûriyê û Gazzê de gelek balkêş e û dijberiya gelê Cûhî sextir kir. Jixwe bicihkirina çekên NATOyê û taybetî "sistema bergiriya roketan" bi serê xwe hêmanek bêaramiyê ye. Di hemî peyam, têkilî û peywendiyên wana yên çend salên dawî de rewşek nû serî hildaye. Li herêmê xwe hêza herî mezin dibînin. Bêhna tehdîtan ji peyam û siyaseta wana tê. Li ser hevkariya Qibris û Îsraîlê ya li rojhilatê Behra Sipî, gefa şandina keştiyên şer her di rojevê de ye. Jixwe ji devê wana peyva duyemîn bi gefên şer dest pê dike.

Di hêla din de li pêşiya doza Kurd û Kurdistanê tehdîta herî bixeter dîsa KT ye. Ne tenê di pirsgirêka bakurê Kurdistanê de, ew li dijî statûyek siyasî ya miletê Kurd e, ku rayedarekî tirk ev helwesta dewleta xwe pirr vekirî vegotibû: "Eger li Arjantînê jî ji Kurdan re mafek bê dayîn, em ê li dijî derkevin"

Wisa dixuye ku nîqaşên derbarê tevger û siyaseta KTyê wê firehtir bibin.

---

*Serketî lê ne şikestî*

# Geşbîn im bi siberoja Kurdan



**David Romano**

Hikûmeta Goergê bav di buhara 1991ê de biryar da ku alîkariya Kurd û Şieyan neke di serhildana wan a ji bo rûxandina Saddam de. Berpirsekî Hikûmeta Amerîka ya wê demê, axaftineke navdar kir û got "Mimkûne ev axaftin hinekî dilreq jî bixuyê, lê me gelekî hewl da ku em nêzîkî wê (Serhildana kurdî) nebin. Ew xelkên gelekî baş û xweşik in jî, lê ew tenê serserî ne, şikestî ne."

Bêguman diyar bû ku ew biryareke gelekî xirab bû. Mesela ku rê li Saddam girtin helîkopterên xwe bi kar neyîne, baş nebû. Ji ber Amerîkî û hevpeymanên wan dikarîn 20 salan berî niha Saddam birûxînin, bêyî ku Şieyên dijdertî jî ji xwe aciz bikin. Lê qet nebe hevpeymanên (Babelîska Biyabanê) ewqas şermezar bûn heta aramgehek bo Kurdên Îraqê çêkirin da derfetekê bidin wan bi xweşî bijîn.

Ev berpirsyarê Amerîkî herwiha şaş derket derbarê karekterê Kurdan, ji ber ku diyar bû ku Kurd ne "serserî" û "şikestîne", lê li dawiyê de Kurdan karî wê yekê nîşanî xelkê bidin ku ew di Îraqê de klîta pêkanîna hikûmeteke rûniştîne. Ew îro ne tenê li Hewlêrê lê li Bexda jî ew mezintirîn serketîne li Îraqê ku di otonomiyeke rûniştî û aram de dijîn, herwiha roleke wan a çalak jî di hikûmeta navendî de heye.

Ez weke kesekî biyanî demên dirêj li gelek navçeyên cudayên Kurdistanê geriyame, loma ez dixwazim hin nêrînên xwe derbarê Kurdan nîşan bidim. Bêguman ev hemû babetên giştî ne, her kesê diçe derveyî xak û kultura xwe helsengandinekê dike. Di zanistê de bêtiriya caran dema bi giştî behsa grûbeke biyanî dikî, pledayên modern ên bêzarker navê te dikin "Rojhilatînîzim". Vêca ji ber ku ez jî ne amade me derbarê şêweyî hevjîniya navbera du gundan di serdema nozdemîn de binivîsim ku kes nexwîne, ez ê bo demeke kêm bibim Rojhilatînîzim.

Tiştê ku ez ti carî ji bîra nakim derbarê Kurdan, geşbîniya wan e. Bêtiriya wan Kurdên ku min dîtine gelekî nerazî nînin ji vê rewşa ew tê de ne, serbarî van hemû karesat, derdeserî û xiyanetên ku rastî wan hatine.

Carekê ku ez di otobuseke biçûk de bûm li nêzîk bajarê Bitlîsê Bakûrê Kurdistanê, zilamê li kêleka min rûniştî zanî ku ez bi tirkî dizanim û em ketine axaftinê, dema em di ber navçeyeke wêrankirî de çûn, zilamê pîr destê xwe bilindkir û got "ev gundê min bû". Min jê pirsî çima wisa lê hatiye, wî got "berî deh salan leşkeran em neçar kirin ku ji gund derkevin û paşî xirab kirin." Tevî ku serûçavên wî pîremêrî xemgîn bûn, lê wî rasterast milê xwe hejand û babet guherand û ji min pirsî ka jin û zarokên min hene yan na. Dema min pirsa rewşa wî kir, wî bersîva min da û ez piştrast kirim ku ew di rewşeke baş de ye û wê di demekê nêz de karekî ji xwe re bibîne. Gelek gotûbêjên min ên ji vê corê hene ku nayên hijmartin, ji Mehabadê heta Qamişlo û ji wir bo heta Helebce. Kurd bêtiriya deman weke tiştekî asayî behsa derdeserî û trajedyayên xwe dikin. Zilamekî hevtemenê min li Dêrsimê ku me bi hevre di rûbarê Mûnzûrê de melevanî dikir, pirs ji min kir "tu dizanî ku ev çem di sala 1938ê bi xwînê sor bû?" Dema min got "belê" ew keniya û me avjeniya xwe berdewam kir. Ez hertimî ecêbmayîyê xelkên ji vê corê me.

**Kurd wefadar in û qet hevalên xwe ji bîra nakin.**

Adeteke din ê Kurdan ku ez hertimî ecêbmayî kirime, wefadarî ye. Wisa dixuyê ku Kurd qet hevalên xwe ji bîra nakin, dibe sedema vê yekê jî ew be ku di berê de zêde hevalên wan nebûn. Min çendîn caran tevgerên nehejî yan kiryarên xirab dîtine, lê bi sedema hevokeke basît ew lêborîne, ev hevok jî ev e "ev hevalê min e" Ez bawer nakim ku Amerîka îro hevpeymanekî wefadartir ji navçeyê bibîne, ev serbarî dilşikestinên di borî de.

Ez eger neçar bim sêyemîn adetê Kurdan jî destnîşan bikim, wê demê divê behsa axaftinên wan ên xweş bikim. Ev xelk hertimî dixwaze aliyên geşên tiştan bibîne û bêtiriya deman ji xwe re dikenin. Loma jî Kurd heta hetayê nikarin tehemulê wê yekê bikin ku ew weke "şikestî" bên binavkirin. Axaftinên xweş, pêkenîn û îmkana wê yekê ku hemû tiştan cidî wernegirin, herwiha rexnegirtin li xwe û lêborîna himber kesên din dibin sedema avabûna tevgereke modern û dilferehiyê.

Van her sê adetên Kurdan bi hevre kom bike, wê demê ez ê bi dahatûyê Kurdan gelekî geşbîn bim.

Yehya Silo



# Perdeya qîzaniyê


Dr. Fikret Yildiz*

Di civaka Rojhilata Navîn û Kurdistanê de xelk pir girîngiyê dide perdeya qîzaniyê. Li vir em dixwazin li ser rol û karê vê perdeyê hinekî rawestin. Di zimanê tibê de ji perdeya qîzaniyê (keçiktiyê) "Hîmen" tê gotin.

**Hûn dikarîn perdeya qîzaniyê çawa bidin nasandin?**

**Dr. Fikret Yildiz:** Hîmen bixwe zarekî gelek zirav e, an jî mirov dikare bêje perçeyek ji çermê vajîna ye û li ber an jî li dora vajîna ye û gelek çînê wê hene. Ev zar ji derve jî tê dîtin. Wekî di nava gel de tê fikirandin ku ew zar berî vajîna yê ye û qul e. Eger ew ne wisa be, xwîna mehane (kiras) nikare derkeve û dibe sedema xirabiyên giran li cem keçikan.

Piraniya wan li dora kanala vajînayê gulover çex dibe û bi qasî nîv santîmê ye. Eger keçik cara yekem bi mêrekî re bikeve têkiliya cînsî jî ew didire û biçekî jî xwîn tê. Di nav gel da ew bûyera wek "Keçiktiya wê xira bû" tê nasandin û gotin. Lê ev zareke normal e ku bi hemû keçikan re heye .

**Ew perdeya keçikaniyê di bedena jinan de cihek çawa digre?**

Hîmen yan jî zar ne organeke pir girîng e yanî ti fonksiyonek wê nîne, lê civak ji aliyê keçikatiyê ve pir girîngiyê didinê. Herwiha hinek zanayên tendirustiyê dibêjin ku ew ji aliyê paqijiya hijyenîk ve girîng e. Perde vajînayê ji metirsîyên ji derve jî diparêze.

**Ti fonksiyoneke zarê tune, lê civak ji aliyê keçiktiyê ve pir girîingiyê didinê**



Wek tê zanîn dema ku jin û mêr cara yekê bi hevre dibin wekî me got yan pir kêm xwîn dibînin yan jî dema ku zar pir zirav be û elestîk be hingê perde nadire û xwîn jî nayê. Jin xwînê dibîne, lê gelek jin jî an xwîn nayê an jî pir kêm dibînin. Ev xwîna kêm an jî nedîtin di nav gel de dibe sedema nakokiyan û pirsgirêkan. Ji ber ew dikevin gumanê ku keçik berî wê bi mekî re razaye û keçiktiye xwe ji dest da ye. Le ew hertim ne wisa ye. Ji bo vê jî eger hewce be, dikarin herin cem jinekologekî û li wir bê pirsîn. Berî ku ew zerarekî bidin wê keçikê. Ji ber carina jî wan keçika dikujin an jî bi heqareta rûb rû dimînin an jî wan ji ber pirsgirgirêkek wisa dişinin mala bavê wê, tişta herî bi mantiq ew e dema mirov rastî bûyerek wisa bi gûman bê dikare serî li bijîşkekî jinan bide. Perde ji zayînê ve heye û tenê eger penîs yan jî tiştekî wek penîs bikeve kanala vajînayê, hingê ew zar diqete û perde didire. Nîşanê wê jî pir caran çend dilop xwîn e.

*Amadekirin:*
*Zelal Çelîk*

*Dr. Fikret Yildiz *Kurdê Anatoliya Navîn e. Ew li Almanya dijî û bijîşkê jinan e.*

## Îlan



Fîlmekî dokumentasyon:
**Rojên sirgûnê yên Ahmet Kaya**
Ahmet Kaya'nin sürgün yilIari belgeseli

Nivîsandin û rejî:
Hayrî Argav

**16.10.2011**

**Munchen-1**
Werkstatskino
Frauhofenstraße 9
**Saet: 14:30**

**Munchen-2**
EinWeltHaus
Schwanthalerstr. 80
**Saet: 19:30**

## Xaçepirs

**Çeperast:** 1- Dijberî, reqabet, pêşbirk – Bi xwarinên ziwa re tê xwarin, pelûl – Belengazo, rebeno, feqîro. 2- Ast, bergeh, merhale (berepaş) – Ajansa Nûçeyên Îranê – Bindestî, koletî, pîkolî. 3- Cîhaza ku ciyê balafir, fûze û tiştên din kifş dike – Kurtasîya "Civata Melayên Kurdistanê" – Navekî jinan, heyvê. 4- Bilind, paye, pir mezin, ezamet – Asaletî, bingehî, esasî (berepaş) – Roja xutbê. 5- Hiştin, rênekirin. 6- Gazek xwezayî, oksîjen, hewa – Nerîna çavan, awirên xirab, çavînî (berepaş). 7- Êşkence, cefa, ezîyet – Bêbextî, sextekarî, xayintî. 8- Beramber, himber, rasthatin (berepaş) – Notayek muzîkê (berepaş). 9- Derbaskirin, buhurandin. 10- Rengek – Xesîs, destgirtî, çikûs (berepaş).

**Serejêr:** 1- Himber, miqabil, pêşber. 2- Elem, kurmîbûn – Zimanê Azerbaycanê. 3- Dirêjkirin, paldan – Hêsan, rehet. 4- Hunermendek Kurd – Hewa, oksîjen (berepaş). 5- Şorba şîr û birincê (berepaş). 6- Bi xwe de kir, gû kir – Nazenîn, nazdar. 7- Roja ku em tê de dijîn, ne doh – Windabûyî, berzebûn. 8- Çirandî, qetandî (berepaş). 9- Fêkîyek (berepaş) – Nuh, taze, modern. 10- Hedef, armanca dûr. 11- Zayendî, cinsî. 13- Mirov zû pê dimre, enerjîya ji enerjîya mirov bihêztir. 14- Nîjadê Kurdan. 15- Bazda, çû, filitî. 16- Rêxistina Lihevhatina Atlantîk a Bakur "Rêxistina Eskerî" (berepaş).




## Ava fêkî ya di qutiyan de zerermend e

**Rûdaw –** Pisporên warê saxlemiyê yên Brîtanyayê hişyariyê didin ku bikaranîna ava fêki ya di qûtiyan de zerermend e. Pispor herwiha dibêjin ew şûşe û hesinê ku qutî bi wan tên çêkirin, zerereke zêde digihînin laşê mirov û dibin sedemê derketina kanserê. Wekî sedema vê yekê jî pispor tevlîbûna maddeyên qutiyan ligel şekirê di nav ava fêkiyan de destnîşan dikin.

Herwiha pispor diyar dikin ku awayên ku qutî bi wan tên dirustkirin ne bêyî kêmasî ne, ji xênî ku bi derbasbûna demê jî nirxê xwarinê û vitaminên wan fêkiyan jinav diçe. Pispor hertim şîretan li xelkê dikin ku ava fêkiyên nû vexwin ji dêvla yên qutîkirî, yan jî rasterast fêkî bixwin.



Tu jî dixwazî wêneyê xwe li vir bibînî?
Ji me re bişîn: info@rudaw.eu

# Rohîv tu bi xêr hatî dinê



Rohîv 28ê Tebaxê 2011 li Bajarê Kolnê çavê xwe li cihanê vekirin. Rohîv kurê hevkara me û amadekara goşeya tendirustiyê Zelal Çelîk e. Em ji dibêjin: Rohîv tu bi xêr hatî dinê! Em ji te re temenekî dirêj, bi bextewarî û serbilindî û ji dayîka te re jî tendirustiyek baş dixwazin. Em li ser navê hemû hevkarên rojnameya Rudawê dêbavên te û tevaya malbata te ji dil pîroz dikin.

## FÊRÎ KURDÎ BIBE

Tîpên wek hev

| i | ئەم پیتە لەناو پیتی عەرەبی نیە | î | ی |
|---|---|---|---|
| birin | بردن | birîn | برین |
| kirin | کردن | kirîn | کڕین |
| din | ئەوی تر | dîn | دین |
| dil | دڵ | dîl | دیل |

## Xaçepirs

Hinek peyvan xwe di nav tîpan de veşartine, tu dikarî wan bibînî?



| | | | | | | | | | |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| K | i | r | m | a | ş | a | n | h | i |
| a | p | e | y | i | v | i | z | k | l |
| ş | a | ş | d | e | s | t | x | e | k |
| m | m | a | e | i | z | n | e | û | p |
| a | û | h | i | j | m | a | r | c | n |
| ç | i | a | x | b | a | m | i | s | c |
| e | b | t | a | r | l | e | e | k | l |
| s | i | t | a | d | i | e | n | z | a |
| d | î | r | o | k | p | i | m | o | û |
| k | ç | r | m | e | s | n | e | v | i |

name
peyiv
dîrok
kirma
reş
dest
şaş
maç
ax
mal
mar

# Beqê çav li mange kir û...



Rojek ji rojan beqek li nava zeviyekî dileyize. Beq ji nişka ve mangeyekî dibîne, ecêbmayî dimîne û ji xwe re dibêje: "Divê ez jî weke vî mangeyî mezin bibim!" Beq xwe pif dide û pif dide, dinepixe û dinepixe. Mange van hereketên beqê dibîne û jê re dibêje: "Neke, bes xwe pif bide, tû yê biteqî." Lê beqê xistiye serê xwe ku ew jî weke mange mezin bibe, lewma hêjî xwe pif dide, heta ku bi carekê de beq diteqe û dimire. Ji ber vê yekê bav û kalên Kurdan jî gotine: "Beqê çav li mange kir û teqiya."

## ZARDOKU

Amedekirina rûpela zarokan: Sevda Şafîk

| | | | | | |
|---|---|---|---|---|---|
| | | 1 | | | |
| | 6 | | | 4 | |
| 3 | | 2 | | 5 | |
| | 4 | | 2 | | 3 |
| | 3 | | | 2 | |
| 1 | | 5 | 4 | | 6 |

### Şertên ZARDOKU

Tenê hejmarên 1 heya 6 bi kar bîne, le nabe hejmarek du caran di yek rêza ji çep berbi rast, anjî ji jor berbi jêr de bê bi kar anîn. Herwiha di herşeş çargoşeyan de jî nabe hejmarên 1 heya 6 bêtirî carekê bê bi kar anîn.